

# BUROYA KURDÎ

## ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 115 - Teşrîn 2014**
Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882
www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet ***www.facebook.com/bureaukurde***

# ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

## *ÇIRÎ 2014*

**KONFÊRANS**

***12.10.2014: Kobanî û êrîşên Dewleta Islamî***



**Hoşeng Osê**, rojnamevan, kurteya rewşa nuha ya Kobanî got :

1- Girîngiya Kobanî ji aliyê erdnigariyî (coxrafî), ramyariyî (siyasî) û leşkerî ji bo dewleta tirkî, Dewleta Islamî (DAIŞ), PKK û PYD.

2- Sedemên ku Dewleta Islamî (DAIŞ) dehf da ku êrîşî Kobanî bike û rola dewleta tirkî di vê êrîşê de.
3- Şaşiyên PYD/YPG (baskê sûrî yê PKKê), ji aliyê leşkerî û ramyariyî, berê û piştî êrîşên DAIŞê li ser Kobanî.

4- Nêzîkbûna çapemeniya erebî û navneteweyî ji vê pirsê.

5- Rola Kurdistana Iraqê û Amerîka di piştgiriya şervanên kurd li Kobanî de, û peyama (mesaj) wan ji Ankara re.

6- Encam û bandorên (te'sîr) cihê, eger Kobanî bi ser bikeve yan hunda bike.

**HEVKARÎ BI RÊXISTINÊN DIN Û SAZENDEYAN RE**

***13.10.2014 : Maseya Dyalogê ya V.G.C. (VlaamsGemmenschapsCommissie)***
Weka her sal, rêxistina Foyer li herderê Bruksêlê maseyên dyalogê, bi hevkariya jimareke mezzin ji rêxistin û sazendeyan, pêk anîn.
Buroya Kurdî beşdar bû maseya VGC (Wezareta Civaka Flamanî li Bruksêlê). Nêzîkî deh kes, ji neteweyahiyên cihê, beşdarî wê bûn.

***15.10.2014: Maseya Diyalogê li navenda çandî ya flamanî De Markten***



Buroya Kurdî, bi hevkariya De Markten, Arte Nativa û Voem, beşdar bû pêkanîna vê maseyê. Mase li navenda çandî De Markten hat vekirin. Nêzîkî 12 kes, ji neteweyahiyên cihê, beşdarî wê bûn. Li dawiyê, Buroya Kurdî du muzîkvan anîn : yekî beljîkî (flaman), **Nathan Daems** (saxophone) û yekî kurd, **Gernas Hac Şêxmûs** (def yan tar). Wan bi hev re muzîka kurdî ya gelek xweş pêşkêş

kir û gelek kesên ku li Micro Marché, qehweyeke ku li tenişta maseya dyalogê ye, rûnişti bûn mest kirin.



## BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

***01.10.2014 : Xwepêşandan ji bo Kurdên Kobanî***
Rêxistina RHKB (Rêxistina Hevbeş ya Kurdistanî li Beljîka), ku tê de 7 partiyên ramyariyî (siyasî) yên her çar perçeyên Kurdistanê hene, li meydana Schumanê, li ber avahiyên Yekîtiya Ewropî, xwepêşandaneke piştgiriyê ji bo bajarê Kobanî, li Kurdistana Sûriyê, ku li hemberî êrîşên DAIŞê şerr dike, pêk anî (li bultena me ya berê, N° 114, binêre).

***03.10.2014 : Xwepêşandan ji bo Şingal û Kobanî***

Rêxistina "Stichting Free Yezidi" (Weqfa Yezîdiyên Azad) li meydana Luxemburgê, li ber Parlementa Ewropî, ji bo riswakirina (mehkûmkirin) nijadkujiya Şingalê, li Kurdistana Iraqê, ya ku DAIŞê li dijî Kurdên Yezîdî kir, û êrîşên wê li dijî Kobanî (li her du hejmarên berê, 113 û 114, binêre), xwe pêşan da (meşiya). **Wezîrê Eşo**, dîrokzan û Kurdekî Ermenistanê, tê de peyivî.



***05.10.2014 : Pêşkêşkirina pirtûkekê li Mechelenê***

Pirtûkeke nuh, bi sernivîsa "Het verdriet van Koerdistan" (Xemgîniya Kurdistanê), ji aliyê jineke hollandî, Maria E. Luten, û Kurdekî Îranê, Azad Kardoî, hat nivîsîn. Ew li pirtûkfiroşiya "Boekhandel De Zondvloed", li bajarê Mechelenê, hat pêşkêş kirin.

Bi riya jînenîgariya (çîroka jiyanê) Azad, xwedenvan civaka kurdî û trajêdiyên mezzin ku ew dikişîne dibîne.





Piştî pêşkêşkirin û giftûgo bi mêvanan re, her du muzîkvanên ku me li jor gotin, Nathan Daems û Gernas Hac Şêxmûs, bernameyeke gelek xweş a muzîka kurdî pêşkêş kir. Ev çalakî ji aliyê Monique Smit û Cemîl Fethî hati bû pêk anîn.

***21.10.2014 : Konfêranseke Navenda Çanda Ewropî***
Konfêransa bi navê "Çima û çawa ewê Ewropa dilê cihanê bimîne ?" ji aliyê Navenda Çanda Ewropî hat pêk anîn. Ev konfêrans ji 9 beşan, ji Çirî heta Teşrîn 2014, pêk tê û ew beşek ji 7mîn rêzeya salane ya konfêransan, a bi navê "Yektabûna dîroka qit'eya ewropî", ku di 2007 de dest pê kir, e.

Buroya Kurdî beşdar bû konfêransa pêşîn, a vekirina vê rêzeyê, ku li Parlementa Fêdêrasyona Wallonî-Bruksêlê hat pêk anîn. Piştî pêşgotina Birêvebira vê navendê, Marine Imberechts, dîrokzan û antropolog, Mîrza Jean-Dominique Giuliani, Serokê Weqfa Robert Schuman, û Banû Antoinette Spaak, Wezîra Dewletê û Seroka Fexrî ya vê parlementê, tê de peyivîn. Li dawiyê rêsêpyoneke xweş hat pêşkêş kirin.

***25.10.2014 : 25mîn sersaliya VGC***
Bi vê hincetê (munasebet), VGC rojeke muzîk û dîlanan li navenda çandî û pirtûkxaneya Muntpunt, ku li tenişta şanoya La Monnaie, û li meydana bedew a La Monnaie, ye pêk anî. Herkes dikari bû bi azadî bikeve hundir.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## *ÇIRÎ 2014*

## KURDISTANA TIRKIYÊ

### PARTIYA "HDP" RASTÎ SEROKWEZÎRÊ TIRK TÊ

Hevserokê partiya kurdî-tirkî "HDP" (Partiya Dêmokratîk a Gelan), ku nêzîkî partiya kurdî "DBP" (Partiya Dêmokrasî û Aşîtiyê) ye, û seroka "DTK" (Kongreya Civaka Dêmokratîk), ku nêzîkî PKKê ye, Selma Irmak, rastî serokwezîrê tirk, Ahmet Davutoğlu, hatin. Cîgirê serokwezîr, Yalçın Akdoğan, û rawêjkarê (muşwir) serokwezîr, Ali Sarıkaya, jî amade bûn.

Piştî rasthatinê, Demirtaş di çonfêranseke çapemeniyê de daxuyand (îlan kir) ku rasthatin erênî (pozîtîf) bû. Piştî êrîşên Dewleta Islamî "DAIŞ"ê li dijî Kobanî, li Kurdistana Sûriyê, pêwendiyên HDP û hukûmeta tirkî têk çû bûn (xerab).
*(rudaw.net, rizgari.org, 01.10.2014)*

### 35 KES JI ALIYÊ POLÎSÊ TIRKÎ DI XWEPÊŞANDANÊN PIŞTGIRIYA KOBANÎ DE HATIN KUŞTIN

***Wan***
Xwepêşandaneke (meşîn) piştgiriya Kobanî li Parka Mûsa Enter, li Wanê, li Kurdistana Tirkiyê, hat pêk anîn.

Polîs bi gazên hêstirrêj êrîş kir. Xwepêşandiyan bersîva wî, bi avêtina kevviran, da. Li parkê, serokê şaxa Wanê ya partiya kurdî DBP, Musa Itah; hevseroka Wanê, Hatice Çoban, û endamekî encumena DBP jî rastî êrîşên polîs hatin.
*(rudaw.net, 02.10.2014)*

***Bajarên cihê yen Kurdistanê û Tirkiyê***
***Di 09 Çirî 2014 de***, xwepêşandanên piştgiriya Kobanî li bajarên cihê yên Kurdistanê û li Tirkiyê bûn. Di pevçûnên bi polîsê tirkê re de, bi giştî 35 kes mirin : 10 li Amedê (Diyarbekir), 6 li Mêrdînê, 5 li Sêrtê, 1 li Adana, 1 li Wanê, 1 li Batmanê, 1 li Mûşê, 4 li Dîlokê (Antep) û 6 li Çewlikê (Bingöl). *(rudaw.net, 10.10.2014)*

***Tehdîdên PKKê***
Hev-serokê KCKê (Komela Civaka Kurdistanê, ku girêdayî PKKê ye), Cemil Bayık, ji kanala têlêvîzyona almanî ARD re got ku eger polîsê tirkî di êrîşkirina xwepêşandiyan de dewam bike, ewê PKK ji nuh de dest bi şerr bike.
*(rudaw.net, 11.10.2014)*

### FIROKEYÊN TIRKÎ BINGEHÊN PKKê BOMBE DIKIN

***Di 13 Çirî 2014 de***, firokeyên tirkî bingehên PKKê li Oremarê, li navçeya sînorî ya Colemêrgê (Hakkari), bombe kirin. Medyayên tirkî dibêjin ku ev yek bersîvdayîna êrîşên PKKê li dijî bingehên jandarmeya tirkî bû. Ji destpêka pêvajoya aşîtiyê de (rawestandina şerr), ev cara yekemîn e ku tevgereke fireh tê kirin.
*(rudaw.net, rizgari.org, 14.10.2014)*

### ŞERR LI QERSÊ (KARS)

***Di 23 Çirî 2014 de***, şervanên PKKê êrîşî navendeke avî-êlêktrîkî (bendav, baraj), li qezayê Kaximanê, ku girêdayî Qersê ye, kir. 3 PKK hatin kuştin û serebazên (esker) tirk çekkên wan stendin.
*(rudaw.net, 24.10.2014)*

### KOVARA KURDÎ YA PÊŞÎN LI SER TENDURUSTIYÊ

Kovara "Medya Tendurusî" bi zimanê kurdî li Amedê (Diyarbekir) derket. Berpirsiyarên weşandina wê, Lokman Aydoğan, Ramazan Tünç û Jan Belek, ji rojnamevanan re daxuyand ku hejmara wê ya pêşîn ji qurbanên Şingal û Kobanî re hatiye diyarî kirin. Ev cara yekemîn e ku kovareke tendurustiyê (saxî) bitenê bi kurdî tê weşandin.

**SEROKWEZÎRÊ TIRK Û BAJARÊN KURDÎ**

***Di 13 Çirî 2014 de***, wezîrê tirk ê karên derve, Ahmet Davutoğlu, beşdar bû civîneke Yekîtiya Ode û Bûrsan li Tirkiyê (TOBB). Wî tê de got ku divê ku bajarên kurdî pêş ve biçin : Wan bi gola xwe, Mardîn û Riha (Urfa) bi geşt (tûrîsm) û çandê, û ku divê ku Amed (Diyarbekir) bibe navenda maliye û bazarganiya van bajaran.

*(rudaw.net, 14.10.2014)*

**DU ENDAMÊN KURD ÊN PARTIYA DESTHILATÊ JI SEDEMA DAIŞÊ XWE DIKIŞÎNIN**

Civîna meha Çiriyê ya encumena birêvebirina şaredariya Wanê li Odeya Pîşesazî (sinaet) û Bazarganiyê ya Wanê bû.

Li derveyî rojevê, endamekî vê encumenê, mafê axaftinê xwest û daxuyand (îlan kir) ku ew ji partiya xwe "AKP" (ya desthilatê li Tirkiyê) xwe dikişîne, ji bo ku Tirkiye li hemberî qirkirinên Kurdan li Şingal û Kobanî bêdeng ma.

Di Îlonê de, endamekî din ê kurd ê heman (eynî) encumena Wanê û yê partiya AKP, Hakki Cemal, jî ji heman sedemê (sebeb) xwe kişandi bû.

*(rudaw.net, 14.10.2014)*

**ENDAMÊN PARTIYEKE TIRKÎ TÊLÊVÎZYONEKE EREBÎ DIGIRIN**

***Di 17 Çirî 2014 de***, endamine partiya tirkî SDP (Partiya Dêmokrasiya Sosyalîst li Tirkiyê) ketin nav avahiya kanala têlêvîzyona erebî, ku li Ankara bi tirkî diweşîne, Al-JaziraTurk, û li paca (pencere) wê slogana "Kobanî ewê bi ser keve" hilawestand (daleqand). Polîs ew jê derxîstin.

*(rudaw.net, 17.10.2014)*

**150 ZAROKÊN KURD ÊN YEZÎDÎ JI BIRÇÎBÛNÊ DIMIRIN**

Li gora rappora Yekîtiya Şaredariyên (belediyye) Anatolya Başûrê-Rojhilatê (GABB) (li Kurdistana Tirkiyê), 150 zarokên kurd ên yezîdî ji birçûbûnê mirin, dema ku ew ji DAIŞê, ji Şingalê (Kurdistana Iraqê) direviyan.

Rappora bi navê "Rappora Krîza Mirovî li Rojhilata Navîn" dibêje ku ji 15 Îlon 2014 de nêzîkî 500.000 kes neçar (mecbûr) man ku ji Şingal, Mexmûr (Kurdistana Iraqê), Kobanî û navçeyên din en Kurdistana Sûriyê birevin.

Li gora ajansên çapemeniyê, nîzîkî 30.000 kes neçar (mecbûr) man ku ji Şingalê ber bi Şirnex (Şırnak), Uludere, Silopî, Cizîr (Cizre) û Idilê birevin. Partiyên ramyariyî (siyasî) û rêxistinên Tirkiyê alîkariya wan kir ku li Nuseybîn, Mardîn, Kızıltepe, Batman, Sêrt (Siirt), Wêranşar (Viranşehir) û Diyarbekirê bi cî bibin.

*(rizgari.org, 16.10.2014)*

**RÊXISTINA MAFÊN MIROV LI TIRKIYÊ BI NEPÊŞWAZÎKIRINA PENABERÊN KURD ÊN KOBANÎ TAWANBAR DIKE**

Nimînendeyekî (temsîlcî) Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê (IHD), Şevket Akdemir, ji ajansa çapemeniyê ya Kurdî Rûdaw re daxuyand ku nêzîkî 200.000 penaberên Kobanî, yên Kurdistana Sûriyê ku reviyan Tirkiyê, li nêzîkî sînor di mercên gelek xerab de, ji aliyê xanî, xwarin û tendurustiyê, dijîn. Ev penaber li nêzîkî Sirûcê (li Sûriyê Pirsûs), li nêzîkî Riha (Urfa), li Kurdistana Tirkiyê, ne.

*(rudaw.net, 18.10.2014)*

**AMERÎKA Û TIRKIYE LI SER ŞERRÊ LI DIJÎ DAIŞÊ HEVDU TAWANBAR (BI SÛC) DIKIN**

Berpirsiyarekî wezareta tirkî ya karên derve ji rojnameya suûdî ya erebî El-Şerq El-Ewset re aşkere kir ku Amerîka û Tirkiyê li ser Dewleta Islamî "DAIŞ"ê hevdu tawanbar (bi sûc) dikin. Berpirsiyarên amerîkî dibêjin ku Tirkiye naxwaze ku Kobanî, bajarekî Kurdistana Sûriyê, biparêze. Bi ser de jî, ew li dijî pêşniyara Tirkiyê ya avakirina navçeyeke ji firokeyan re qedexekirî (no fly zone) ye. Vî berpirsiyarî got ku Tirkiye welatê pêşin e ku DAIŞ xist lîsteya xwe ya têrrorîst, lê ku wateya (ma'na) vê yekê ne ew e ku rejîma sûrî ya Beşşar El-Esed ji DAIŞê kêmtir têrrorîst e.

***Di 09 Çirî 2014 de***, sekreterê giştî yê NATOyê, Jens Stoltenberg, û nimînendeyê (temsîlcî) Amerîka ji bo tevgerên leşkerî li dijî DAIŞê, John Allen, çûn Tirkiyê û tê de bi berpirsiyarên tirk re giftûgo kirin. Berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Jen Paski, got ku ewê êrîşên hevpeymaniya navneteweyî  ne li ser rejîma serok Esed, lê li ser DAIŞê, bin.

*(rudaw.net, 10.10.2014)*

**JI SEDEMA DAIŞê DANIMARK BI BIRRÎNA PÊWENDIYÊN XWE BI TIRKIYÊ RE TEHDÎD DIKE**

Li Tirkiyê nivîskarekî danimarkî, Lars Hedegar, ji aliyê DAIŞê hat ragirtin û bi mirinê tehdîd kirin. Piştre, ew hat azad kirin. Piştî azadkirina wî, wezîrê danimarkî yên karên derve, Martin Lidegaard, ji rojnameya Berlingske re got ku wî hişyariyek (ixtar) daye Tirkiyê. Ramyarên danimarkî yên din jî bi birrîna pêwendiyên xwe bi vî welatî re tehdîd kir.

*(rudaw.net, peyamner.com, 13.10.2014)*

**LI SER SÛRIYÊ TIRKIYE LI DIJÎ ÎRANÊ**

Piştî daxuyaniyên hukûmeta îranî li ser şerrê li Sûriyê (li bultena me ya buhurî, N° 114, binêre), berdevkê wezareta tirkî ya karên derve, Tancu Bilbiç, Îran bi piştgiriya rejîma sûrî, ku berpirsiyara rast a kirinên têrrorîst ên DAIŞê li vî welatî ye, tawanbar (ittiham) kir.

*(rizgari.org, 18.10.2014)*

**SEROKÊ TIRK : ÇIMA HERGAV KOBANÎ ?**

Serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan çend caran û di dema seredanên xwe li derve de li dijî medatîkkirina navneteweyî ya şerrê li dijî DAIŞê li Kobanî, li Kurdistana Sûriyê, û li dijî bêdengiya li ser rewşên weka wê yên li ciyên din ên Sûriyê û li welatên din, riswa (protêsto) kir. Û wî êrîşî Amerîka jî, ku daxwaziya xwe ya biçekkirina YPG (Yekîneyên Parastina Gel, li Kobanî, ku girêdayî PKKê ne) daxuyand, kir. Wî got ku PYD û PKK heman (eynî) tişt in, ku her du jî têrrorîst in.

Li ser "pêvajoya çareseriyê" (rawestandina şerrê li dijî PKKê), wî got ku giftûgoyên bi serokê PKKê ku li zîndanê ye, Abdullah Öcalan, re bitehlike ne, ji bo ku daxuyaniyên wî û yên serokên leşkerî yên vê partiyê, ku li çiya ne, di dijî hev in.

*(rudaw.net, nefel.com, 19.10.2014)*

**TIRKIYE DIPEJIRÎNE KU PÊŞMERGE JI TIRKIYÊ DERBAS BIBIN, JI BO KU BIÇIN KOBANÎ**

Li ser xwestina serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, û ji sedema fişarên (tazyîq) Amerîka, Tirkiyê pejirand (qebûl kir) ku pêşergeyên Kurdistana Iraqê ji Tirkiyê derbas bibin, ji bo ku biçin hawara şervanên Kobanî. Wezîrê tirk ê karên derve, Mevlut Çavuşoğlu, ev nûçe rastand (te'kîd kir). Û wê di medyayên tirkî de gelek deng da.

*(rudaw.net, avestakurd.net, rizgari.org, 20 û 21.10.2014)*

**DEWLETA ISLAMÎ SEROKEKÎ KURD Ê LEŞKERÊ AZAD Ê SÛRÎ REVAND**

***Di 17 Çirî 2014 de***, 4 çekdarên DAIŞê li Riha (Urfa, Kurdistana Tirkiyê) serokekî kurd ê Leşkerê Azad ê Sûrî (dijberiya erebî ya laîk), ku bi navê Ebû Îsa tê nas kirin, û kurrê wî yên 20 salî, revandin.

Ev serok ji civîneke bi leşkerê tirkî re derdiket. Merivên DAIŞê dixwest ku bi riya qaçaxçiyekî wan bibe Sûriyê. Dema ku ew nêzîkî sînor bûn, qaçaxçî serbazên (esker) tirk dîtin û reviya. Her du qurban jî tecrube kir ku birevin, lê serbazan agir berda wan. Bav, Ebû Îsa, birîndar bû. Lê her du jî kari bûn birevin.

*(rudaw.net, 20.10.2014)*

**SEROKEKÎ "YPG" LI KURDISTANA TIRKIYÊ TÊ RAGIRTIN**

Yek ji serokên YPG (Yekîneyên Parastina Gel, baskê sûrî yê PKKê), li Kobanî, li Kurdistana Sûriyê, birîndar bû bû. Ew hat birin nexweşxaneyeke Sirûcê (li nêzîkî Urfa), li Kurdistana Tirkiyê, li nêzîkî sînorî sûrî. Polîsê tirkî ew li nexweşxaneyê ragirt.

Navê rast ê vî serokî Salahettin Dilek e, lê ew bi sernavê Sofî tê nas kirin. Ew Kurdekî Mêrdînê, Kurdistana Tirkiyê, ye. Di 1995 de, ew çû bû Almanya û li wê derê xwe gihandi bû PKKê. Di 2007 de, ew bû bû serokekî PKKê li geliyê Zapê, û di 2014 de li Amedê (Diyarbekir), li Kurdistana Tirkiyê. *(avestakurd.net, 25.10.2014)*

**500 "YPG" LI TIRKIYÊ TÊN DERMAN KIRIN**

Kovara amerîkî Foreign Policy got ku di destpêka şerr li Kobanî de, nêzîkî 500 şervanên YPG li nexweşxaneyên tirkî hatin derman kirin. Û wê got jî ku 180.000 penaberên Kobanî li kampan, li Tirkiyê, dijîn.

*(rudaw.net, 25.10.2014)*

**SÊ SERBAZÊN TIRK LI GEVERÊ (YÜKSEKOVA) TÊN KUŞTIN**

***Di 25 Çirî 2014 de***, 3 serbazên tirk, piştî êrîşekê li bazara Geverê, ku girêdayî Colemêrgê (Hakkari) ye, hatin kuştin. Vekolînek (ankêt) dest pê kir.

*(rudaw.net, 25.10.2014)*

**PARTIYA KURDÎ "PAK" DIÇE SEREDANA PENABERÊN KURD ÊN KOBANÎ**

***Di 26 Çirî 2014 de***, şandeke partiya kurdî ya nuh "PAK" (Partiya Azadiya Kurdistan) çû Sirûcê (li Kurdistana Sûriyê jê re dibêjin "Pirsûs"), li sînorê Kurdistana Sûriyê û Kobanî, ji bo piştgiriya penaberên kurd ên vî bajarî.

Şand, bi serokatiya Mustafa Özçelik, çû seredana Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS, ku ji partiyên ku ne PKK ne pêk hatiye). Piştre, ew çû şaredariya Pirsûsê û tê de rastî hev-şaredar Zuhal Ekmez û parlementerên partiya kurdî DBP hat.

Piştre, şand bi hev-şaredar re çû sînorê ku tê de penaber hene û li wê derê konfêranseke çapemeniyê pêk anî, ji bo daxuyandina (îlankirin) ku wê alîkariyeke mirovî, ku ji cillên zivistanê, bettaniye û tiştên din pêk hatiye, aniye. Serokê wê piştgiriya partiya xwe ji şervanên Kobanî û pêvajoya dyalogê di navbera partiyên kurdî yên Sûriyê de, ku li Kurdistana Iraqê dibe (li jêr, li beşa Kurdistana Iraqê, binêre), re daxuyand.

*(rudaw.net, rizgari.org, 27.10.2014)*

**PEYAMA DEWLETA ISLAMÎ JI SEROKÊ TIRK RE**

Bi vîdêoyeke ku li ser entêrnêtê di 10 Çirî 2014 de hat weşandin, DAIŞê ji serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan re got : *"Xelîfeya te kutah bûye (qediyaye)"* û *"Tirkiye serleşkera NATO li dijî misilmanan bû. Îro jî, ew di nav hevalbendiya şeytanî ku ji aliyê Amerîka tê bi rê ve birin de tev digere"* …

*(rudaw.net, 30.10.2014)*

**CIVÎNA ENCUMENA EWLEHIYA NETEWEYÎ YA TIRKÎ**

***Di 30 Çirî 2014 de***, Encumena Neteweyî ya Ewlehiyê ya Tirkiyê (MKG) dirêjtirîn civîna xwe di dîroka xwe de kir. Ew di demjimêr (saet) 14.25 de dest pê kir û di 00.45 de kutah (xelas) bû. Rojeva wê *"pêvajoya aşîtiyê"* (rawestandina şerrê li dijî PKKê), derbasbûna pêşmergeyên Kurdistana Iraqî ji Tirkiyê, ji bo ku biçin Kobanî (li jêr, li Kurdistana Iraqê, binêre), û bûyerên li Sûriye û Iraqê bû.

*(rudaw.net, 31.10.2014)*

# KURDISTANA IRAQÊ

**ȘERR LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

**HÊZÊN ERDÎ YÊN PÊŞMERGE, BI PIȘTGIRIYA BOMBEKIRINÊN EZMANÎ YÊN HEVALBEN-DIYA NAVNETEWEYÎ**

**ENIYA KERKÛKÊ**

***Tuz Xurmatû***

***Di 01 Çirî 2014 de***, pêşmerge du gundên qezayê Tuz Xurmatû, Hilêwa Mezin û Hilêwa Biçûk, ên parêzgeha (wilayet) Kerkûkê, stendin.
*(rudaw.net, rizgari.org, peyamner.com, avestakurd.net, nefel.com, 01.10.2014)*

Bi hevkariya leşkerê iraqî û xwebexşan (volontaires), pêşmerge 45 gundên Tuz Xurmatû rizgar kirin. Rûniştevanên wan vegeriyan.
*(rudaw.net, 08.10.2014)*

**ENIYA MÛSILÊ**

***Rebî'e***

***Di 31 Îlon 2014 de***, pêşmerge tevgereke mezzin li nêzîkî Çiyayê Șingalê kir û çavdêriya (kontrol) qezayê Rebî'e kir.

Serokê hêzên Kurdên yezîdî li çiyayê Șingalê, Qasim Șeşo, daxuyand ku moralê şervanên Dewleta Islamî (DAIȘ) pirr nizm e û ku ew ber bi qezayê Beacê û navçeyên din ên Mûsilê direvin.
*(rizgari.org, nefel.com, 01.10.2014)*

***Zumar***

Pêşmerge 2 gundên Zumarê rizgar kirin : Xirabe Işiq û Xirabe Tîn.
*(rudaw.net, 07.10; rizgari.org, 16.10.2014)*

***Di 25 Çirî 2014 de***, pêşmerge çavdêriya tevayiya navçeya Zumarê kir û bajar û 11 gundên wî dagir kirin (işgal kirin). Wan bi pûçkirina mînên (lexm) ku ji aliyê şervanên DAIȘê, berê reva xwe hati bûn danîn dest pê kir.
*(rudaw.net, peyamner.com, rizgari.org, nefel.com, 25.10.2014)*

***Șingal***

Gênêralê pêşmergan, Aştî Koçer, ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re daxuyand ku şervanên DAIȘê çavdêriya hemî riyên dora Çiyayê Șingalê, ku tê de nêzîkî 10.000 Kurdên yezîdî pena bûne, kir.

Șervanên DAIȘê ji du aliyan êrîşî pêşmergeyên ku li Çiyayê Șingalê bûn kir, lê evên dawîn ew paş de xistin û bi dehan ji wan kuştin.
*(rudaw.net, 19.10.2014)*

**SEROK BERZANÎ LI ENIYA ȘERR**

Yek ji serokên hêzên pêşmerge, gênêral Mexdîd Herkî, daxuyand ku serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, nuha li eniya şerr, bi pêşmergeyan re ye. Ev yek, ji bo ku bandora (te'sîr) trajêdiya Șingalê li ser wî gelek e. Û wî got jî ku eniya şerrê li dijî Dewleta Islamî 1.100 km dirêj e û ku loma ji bo paqijkirina hemî navçê ji DAIȘê zeman pêwîst e.
*(rizgari.org, 09.10.2014)*

**AMERÎKA JI LEȘKERÊ IRAQÎ BÊ HÊVÎ YE**

Li gora Navenda Giştî ya Leşkerê Amerîkî (CENTO), leşkerê amerîkî ji leşkerê iraqî bê hêvî ye. Li gel hemî êrîşên ezmanî li dijî DAIȘê û alîkariyên leşkerî û perwerdeyan, leşkerê iraqî xwe ji Mûsil û dora wê kişand. Ev yek jê re darbeyeke mezzin anî û ew hîn jê sax ne bûye. Nuha, ew bitenê tevgerên piçûk dike.
*(rudaw.net, 24.10.2014)*

**60 WELAT BEȘDAR DIBIN ȘERRÊ LI DIJÎ DAIȘê LI IRAQ Û SÛRIYÊ**

Di bultena xwe ya buhurî, N° 114, de me navên 8 welatên ku beşdar dibin şerrê li dijî DAIȘê, li tenişta Amerîka, jimartin. Li jêr, navên 60 welatên ku, her yek bi awayê xwe, dest bi beşdarbûnê kiriye : şandina çekkan, alîkarî di firrîna firokeyan de, perwerdekirina pêşmerge di bikaranîna çekkên giran de, alîkariya mirovî, servîsên dizzî …

***Di 22 Çirî 2014 de***, diplomatekî kevn ê amerîkî, William Burns, di rapporekê de navên welatên ku heta vê mêjuyê (tarîx) beşdar bûn vê hevalbendiya navneteweyî di şerrê xwe li dijî Dewleta Islamî li Iraq û Șamê de. Li jêr, navên van welatan bi ingilîzî, bi rêza alfabêtî :

Albania, Australia, Austria (Nêmsa), Bahrein, Belgium (Beljîka), Bulgaria, Canada, Croatia, Cyprus, Czech Republic (Çêkî), Denmark, Egypt (Misr), Estonia, European Union (Yekîtiya Ewropî), Finland, France, Georgia, Germany (Almanya), Hungary, Iceland, Iraq, Iran, Ierland, Italy, Japan, Jordan (Urdun), Kosovo, Kuwait, Latvia, Lebanon (Lubnan), Lithania, Luxembourg, Macedonia, Moldova, Montenegro, Morocco, Netherlands (Hollanda), New Zealand, Norway, Oman, Poland, Portugal, Qatar, Romania, Saudi Arabia, Serbia, Slovakia, Slevenia, South Korea, Spain, Sweden, Switzerland (Swîsra), Taiwan, Turkey,

Ukraine, Unites Arab Emirates, United Kingdom (Brîtanya Mezzin), Unites States (Amerîka).
*(evinifilms.com, 27.10.2014)*

**JIMARA ÊRÎŞÊN EZMANÎ**
Li gora CENTOMê, ji 08 Tebax 2014 heta nuha, li Iraq û Sûriyê 600 êrîşên ezmanî li dijî bingehên DAIȘê hatin kirin.
*(rudaw.net, 24.10.2014)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Amerîka***
***Di 04 Çirî 2014 de***, serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, pêşwaziya şandeke bilind a amerîkî, ku ji gênêral John Alen, nimînendeyê (temsîlcî) taybetî yê Serok Barak Obama ji bo karên hevalbendiya navneteweyî li dijî DAIȘê; balyozê (sefîr) nuh ê amerîkî li Iraqê, Steward Jons; alîkarê cîgirê serokê karên derve, Bert MacGork, û konsulê giştî yê amerîkî li Kurdistanê, Jozef Penington, pêk hati bû kir.

Wan rojeva herêmî, şerrê DAIȘ û hevalbendiya navneteweyî giftûgo kirin. Șandê dilniya (te'kîd) kir ku ewê alîkariya jimara mezzin a penaberan li Kurdistanê û piştgiriya pêşmerge di şerrê wan li dijî têrrorîstên DAIȘê de bike.
*(avestakurd.net, 05.10.2014)*

***Di 16 Çirî de***, Nêçîrvan Berzanî pêşwaziya alîkarê rawêjkarê (muşawir) ewlehiya (emniyyet) neteweyî ya Amerîka, Tony Blinken, û şanda ku pê re bû kir. Șandê şahbûna xwe bi liberxwedana pêşmerge li dijî DAIȘê, beşdarbûna Kurdan hukûmeta nuh a Bexdadê û parastina Kobanî li Kurdistana Sûriyê ravekir (got).
*(rudaw.net, 16.10.2014)*

***Di 16 Çirî de jî***, Tony Blinken ji aliyê serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, hat pêşwazî kirin. Evê dawîn jê re got ku ewê pêşmerge DAIȘê bişikînin, lê ku ew hêvî nakin ku hemî Iraqê rizgar bikin. Wî spasiya Amerîka ji bo nehiştina Kobanî di nav destên DAIȘê de kir.
*(nefel.com, 17.10.2014)*

***Di 28 Çirî de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya serleşkerê navenda hêzên amerîkî (CENTCOM), gênêral Lloyd Austin, kir û spasiya wî ji bo alîkariya ku ji Kobanî re hat şandin kir. Gênêral Austin got ku *"dijmin nema hêza wî maye ku êrîşên rasterast (direct) bike û ku nuha irada gelê Kurdistanê û hêzên Pêşmerge ji bo parastina Kurdistanê û şikandina têrrorîstên DAIȘê ji hemî caran xurttir e"*. Û wî serxweşiya xwe ji bo pêşmergeyên ku di şerr de mirin pêşkêş kir.

Bi gênêral re şandeke ku ji balyozê amerîkî li Iraqê, Stuart Jones, û jimareke berpirsiyar û rawêjkarên leşkerî yên Pentagonê pêk hati bû hebûn. Ji aliyê kurdî, beşdar ev bûn : Mesûr Berzanî, rawêjkarê encumena ewlehiya neteweyî ya Kurdistanê; Fuad Huseyn, serokê kabîneya serokê Kurdistanê; Mustafa Seyyid Qadir, wezîrê pêşmerge; Enwer Hacî Osman, alîkarê evê dawîn; Cefer Șêx Mustafa, Ferîq Șerwan û Cebar Yawer, endamên serokatiya hêzên parastinê, û Sefîn Dizeyî, berdevkê hukûmeta Kurdistanê.
*(rudaw.net, nefel.com, 28.10.2014)*

***UN***
Alîkarê sekreterê giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, Ivan Siminovitch, çû seredana serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî. Wî pesna rewşa Kurdistanê da, bi taybetî ji aliyê mafên mirov û mafên jinan, lê dîplomasî, bingeha aborî, azadiya bîr (fikr) û medyayan, û nehiştina tundiyê (şiddet) jî.

Siminovitch got jî ku UN dikare semîner û "workshop"an li ser mafên mirov û yên din, ji bo rêxistinên cihê yên hukûmeta Kurdistanê, pêk bîne. Wî spasiya Kurdistanê, ji bo pêşwazîkirina ewqas penaberan, kir.
*(rudaw.net, 19.10.2014)*

***Di 23 Çirî 2014 de***, nimînendeyê (temsîlcî) UNê ji bo Sûriyê gihajt Kurdistana Iraqê û rastî serokwezîrê kurd Nêçîrvan Berzanî hat.
*(peyamner.com, 23.10, rizgari.org, avestakurd.net, 24.10.2014)*

**BANGA RIZGARKIRINA KEÇÊN YEZÎDÎ KU JI ALIYÊ DAIȘê HATINE REVANDIN**
Navenda Çandî û Civakî ya Lalişê, ya Kurdên Yezîdî, bangî serokên êlên (eşîr) erebî kir ku ji bo rizgarkirina keçên yezîdî ku ji aliyê Dewleta Islamî hatine revandin bilivin. Wê got jî ku beşek ji Ereb û Tirkmenên sunnî yên navçeya Șingalê hevkariya DAIȘê kir, lê ku ew bawer dike ku di nav wan de kesên durust jî hene. Wê spasiya serok Mesûd Berzanî, pêşmerge û gelê Kurdistanê, ji bo helwesta wan a birûmet û parastina Șingalê, kir. Û wê anî bîran ku di dirêjayiya dîrokê de, Kurdên yezîdî qurban ji bo Kurdistanê dan û ku li gel hemî katastrofên (karisat, belayên mezzin) ku hatin serê wan, helwesta wan hergav kurdî (pro-kurd) bû û ku ewê bi vî awayî dewam bikin. Li dawiyê, wê got ku nexşeyeke (plan) leşkerî ya xurt a hêzên pêşmerge ji bo rizgarkirina Șingalê heye, ku Yezîdî nikarin van bûyeran ji bîr bikin, lê ku ew gavan ber bi asoyeke (ufuq) geş davêjin.
*(rudaw.net, 09.10.2014)*

**ALÎKARIYA KOBANÎ**

***Banga Serok Berzanî***
***Di 07 Çirî 2014 de***, serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, bangeke nivîskî ji civaka navneteweyî re, ji bo piştgiriya Kobanî, li Kurdistana Sûriyê, di têkoşîna wê li dijî Dewleta Islamî de, şand.
*(nefel.com, 08.10.2014)*

***Vekirina kampeke penaberan li Kurdistana Tirkiyê***

***Di destpêka Çirî de***, komeke endamên parlementa Kurdistana Iraqê çû Murşitpınarê, li Kurdistan Tirkiyê, ya gelek nêzîkî sînorê sûrî û Kobanî, ku tê de penaber hene.

***Di 14 û 15 Çirî 2014 de***, parlementa Kurdistanê li Hewlêrê civiya û ev biryarên jêrîn stendin :

1- Ewê Parlement piştgiriya gelê Kurdistana Sûriyê, di irada wî û awayê xwebirêvebirinê (Kanton) de, bike û ewê Hukûmeta Herêma Kurdistanê pêwendiyên fermî (resmî) pê re bike.

2- Hukûmeta Herêma Kurdistanê divê ku ji Kurdistana Sûriyê re alîkariyeke malî pêşkêş bike.
*(peyamner.com, rizgari.org, 15.10.2014)*

***Di 19 Çirî de***, cardin komeke parlementeran çû sînor û daxuyand (îlan kir) ku Parlementa Kurdistanê kampek ji bo penaberên Kobanî vekir.

***Amerîka çekkan ji Kobanî re dişîne : Riya ezmanî***

Serokatiya navendî ya leşkerê amerîkî (CENTO) daxuyand ku çekkên sivik û destgehên bijîjkî (tibbî), ku ji bo Kurdistana Iraqê hati bûn veqetandin, ji Kobanî re hatin şandin, ji bo alîkarîkirina şervanên kurd (YPG) ku xwe li dijî Dewleta Islamî biparêzin. Ev destgeh bi paraşutan, ji ezman, bi firokeyên C-130 hatin avêtin.
*(rudaw.net, rizgari.org, 20.10.2014)*

***222 pêşmerge diçin Kobanî :***

***Riya ezmanî*** : 72 pêşmerge ji firokexaneya Hewlêrê çûn a Riha (Urfa), Kurdistana Tirkiyê. Ji wê derê, ewê ji sînorê sûrî derbas bibin, ji bo ku li Kobanî, bajarekî piçûk ê Kurdistana Sûriyê, ku ji nêzîkî 40 rojan de li dijî Dewleta Islamî li ber xwe dide, şerr bikin.

***Di 29 Çirî de***, pêşmerge bi otobusan gihajtin Pirsûsê (Sirûc), li nêzîkî sînorê Sûrî.

***Riya erdî*** : 150 pêşmerge bi erebeyên xwe yên leşkerî (çekkên giran) ji Hewlêrê û Kurdistana Tirkiyê çûn Kobanî. Di dirêjayiya rê de, ji Hewlêrê heta sînorê tirkî, heta şeva dereng, xelk bi germî pêşwaziya wan kir.

Di dirêjayiya sînorê dirêj ê Kurdistana Tirkiyê de, bi hezran Kurdên Tirkiyê bi şahbûneke mezzin, bi muzîk û dîlanên kurdî, bi bilinkirina alên kurdî û bi avêtina duruşmên (slogan) *"Bijî yekîtiya Kurdan, Kurdistan Yek e "*, pêşwaziya pêşmergeyan kir. Tu polis nîn bû !

***Di 30 Çirî de***, koma pêşîn a 10 pêşmergeyan ji sînor derbas bû û ket nav Kobanî. Piştre, komen din xwe gihand wê.
*(Çapemeniya kurdî, tirkî û navneteweyî, 29, 30 û 31.10.2014)*

**LI SER REVANDIN Û FIROTINA JINÊN KURD ÊN YEZÎDÎ, DAIŞ XWE DISPÊRE QUR'ANÊ**

Dewleta Islamî "DAIŞ" di hejmara pêşîn a kovara xwe "Dabiq" de gotareke bi ingilîzî, ji bo nîşandana sedema (sebeb) revandin û firotina bi hezaran jinên kurd ên yezîdî, nivîsî û xwe tê de sipart "Enfal" (xenîmeyên ku di şerrê olî de divê ku kafir bidin misilmanan). Li jêr çend perçe :

*"Ne normal e ku hindikayiya yezîdî li deşta Nînewa, li Îran û Sûriyê bimîne. Me sunneta pêxember, ku heman (eynî) tiştî ji kafiran re berê 1400 salan kir, bi cî anî".*

*"Tiştê ku hat serê Yezîdiyan nabe ku li ser Fille û Cihuyan bê kirin, ji bo ku yezîdî ne xwdiyên Pirtûka Ezamanî (Tewrat, Incîl û Kur'an) ne, ku divê ku ji misilmanan re zimme (bac, taks) bidin, in".*

*"Jin û zarokên yezîdî xenîme ne (mulkên kafiran ku mafên şervanên misilman heye ku ji wan bisînin). Loma me keç û jinên yezîdî li ser şervanên xwe, yên ku beşdar bûn şerrê Şingalê, belav kirin".*

*"Şervanên Dewleta Islamî jinan difiroşin, weka ku Eshab (heval, kesên ku nêzîkî pêxember Muhammed bûn) kir".*

*"Zarok ji diyên xwe ne hatin dûr xistin, ji bo ku piraniya wan (jin) bûn misilman".*

Navê vê kovarê, Dabiq, ê navçeyeke li nêzîkî Helebê, li Sûriyê, ye. Di yek ji gotinên pêxember Muhammed de, tê gotin ku şerrek li Dabiqê di navbera Leşkerê Rûm (Rojavayî, Ewropî) û misilmanan de bû, ku misilman ew kar kir (bi ser ketin) û ku ji wê gavê de navê vî şerrî bûye "Qedr" (şerrê qederê).

Loma, berdevkê DAIŞê, Ebû Muhammed Ednanî, daxuyand ku *"şeva qederê"* nêzîk bûye û ku *"emê êrîşî Rûman (rojhilatiyan, Ewropiyan) bikin, jinên wan bistînin û bifiroşin".*

Yekîtiya Zanayên Islamî li Kurdistanê ev daxuyanî tawanbar kirin û got ku tiştê ku DAIŞ dike ne li gora Islamê ye.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 14.10.2014)*

**BARAN LAŞÊN BI DEHAN YEZÎDÎ DERDIXÎNE**

Wezareta iraqî ya mafên mirov daxuyand ku barana ku li navçeya Şingalê bariya bi dehan laşên Kurdên yezîdî, ku ji aliyê DAIŞê hati bûn kuştin, derxistin.

Li gora amarên (statîstîk) nimînendeyê UNê ji bo Iraqê, Nikolay Mladenov, li tevayiya Iraqê, DAIŞê 9.347 kes kuştin û 17.386 jî birîndar kirin.
*(rudaw.net, 31.10.2014)*

**PKK LI ÇIYAYÊ ŞINGALÊ PIRSAN DERDIXÎNE**

***Di 16 Çirî 2014 de***, şervanên PKKê (HPG : Hêzên Parastina Gel), ku li Çiyayê Şingalê ku tê de bi hezaran penaberên Kurd ên Yezîdî hene, ne, li çiya xwepêşandaneke ku jin, zarok û cuhanên penaber beşdarî wê bûn pêk anî. Wan ji pêşmergeyan (şervanên Kurdistana Iraqê) xwest ku ji çiya derkevin, erebyên wan şikandin û êrîşî nexweşxaneyê kir.

Serokê koma yezîdî ya pêşmergeyan, Qasim Şeşo, bersîva wan da û got ku pêşmerge van penaberan diparêzin û ku ewê Şingalê rizgar bikin.

*(rudaw.net, nefel.com, rizgari.org, 17.10.2014)*

HPG bicarek inkar kir ku wan van tiştên jorîn kirine.

*(rudaw.net, 18.10.2014)*

**BUROYA PARLEMENT Û WEZARETEKE KURDÎ LI KERKÛKÊ**

Serokê Parlementa Herêma Kurdistanê, Yûsuf Muhammed, Buroyeke vê parlementê li Kerkûkê vekir. Wî got ku *"Kerkûk bajarekî Kurdan e û emê tê de rêfêfandumekê bi piştgiriya UNê bikin"*.

*(rudaw.net, rizgari.org, 17.10.2014)*

Piştî Parlementê, Wezareta Perwerdeya Bilind û Lêgerînên Zanyariyî ya Kurdistanê jî bi awakî fermî (resmî) buroyek li Kerkûkê vekir. Amanca vê yekê hêsankirina perwerdekirina xwenekarên Kerkûkê û navçeyên ku li derveyî desthilata Kurdistanê ne (navçeyên ku ji dema Saddam Huseyn erebkirî ne) ye. Dr. Ahmed Emîn Fethullah birêvebirekî (mudîr) vê buroyê dest nîşan kir.

*(peyamner.com, 28.10.2014)*

**WEZARETÊN KURD LI HUKÛMETA IRAQÎ**

***Di 18 Çirî 2014 de***, piştî hilbijartinên parlementerî yên iraqî, 8 wezîrên kurd li hukûmeta iraqî li Bexdadê sond xwar. 6 ji van karan (post) gelek girîng in :

1- Dr Roj Nûrî Şawês : Cîgirê 2mîn ê serokê Iraqê.
2- Xalid Ubeydî : Wezîrê parastinê.
3- Muhenned El-Xeban : Wezîrê hundir.
4- Huşyar Zêbarî : Wezîrê maliyê.
5- Firyad Rewanduzî : Wezîrê Çandê (kultur).
6- Dr Derbaz Muhammed : Wezîrê Koçberiyê.
7- Beyan Nûrî : Wezîra karên jinan.
8- Saman Abdullah : Wezîrê dewletê.

Kurd pejirandi bûn (qebûl kiri bûn) ku beşdarî vê hukûmeta nuh, ji bo demeke tecrubekirinê ya 3 mehan, bidin. Hukûmeta Kurdistanê mercên (şert) li ser xalên nelihevkirinê di navbera Bexdad û Hewlêrê de danîn û xwest ku ew bên çare kirin : navçeyên erebkirî yên Kurdistanê, mûçeyên (meaş) karmendên kurd ên ku ji aliyê Bexdadê hatin cemidandin, firotina pêtrola Kurdistanê …

*(rudaw.net, 18.10.2014)*

**BEŞDARBÛNA CIVÎNA BILIND A ABORÎ YA CIHANÎ LI DUBLINê**

Bi hinceta (munasebet) Civîna Bilind a Aborî ya Cihanî li Dublinê, li Îrlanda, şandeke 27 cuhanên kurd, ji weqfa Rwanga, beşdar bû rojeke li ser cuhanan. 2.000 endamên şandên cihanê, yen 18 - 30 salî, amade bûn.

Maseyên gilover û giftûgo 4 roj ajot (dewam kir) û kesahiyên navdar, weka serkreterê berê yê UNê, Kofi Annan, beşdarî wan bû. Kurdeke yezîdî, Perîxan Suleyman Ibrahîm, li ser hovîtiyên ku Yezîdiyan ji aliyê DAIŞê kişandin peyivî : kuştin, revandina jin û zarokan, firotina jinên yezîdî weka kole …

*(rudaw.net, 21.10.2014)*

**UN : TECRUBEYA NIJADKUJIYÊ**

Li gora Agence France Presse, alîkarê sekreterê giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî (UN), berpirsiyarê mafên mirov, Ivan Siminovitch, daxuyand ku piştî seredana Iraq û Kurdistana Iraqê, wî bersîv da rojnamevanan li ber buroya UNê li New Yorkê.

Li ser Kurdên yezîdî, wî got ku li gora hin belge û agahdariyan, dema ku DAIŞê êrîşî wan kir, wê ew neçar (mecbûr) kirin ku bibin misilman, lê dema ku wan ev yek ne pejirand (qebûl ne kir), ew hatin kuştin. Û wî got jî ku meriv dikare tiştê ku Kurdên yezîdî kişand *"tecrubeya nijadkujiyê"* (tecrubeya qetliam) bi nav bike. Û wî êrîşên li dijî Kurdan li Sûriye û Iraqê *"tawanên şerr"* (cinayetên şerr) û *"tawanên li dijî mirovahiyê"* bi nav kirin.

*(rudaw.net, 22.10.2014)*

**KONFÊRANS LI NEW YORKê : TIRK Û KURDÊN KU PÊTROL JI DAIŞê DIKIRRIN EWÊ BÊN CEZA KIRIN**

Li konfêranseke navenda "Carnegie Endowment for International Peace" li New Yorkê, alîkarê wezîrê amerîkî yê maliyê, David Conen, got ku ewê Amerîka Tirk û Kurdên ku pêtrol ji DAIŞê dikirrin bi hişkî ceza bike. Wî got ku di meha Îlona buhurî de, hinek kes, ku ji wan Kurdên Iraq û Tirkiyê, pêtrola erzan ji DAIŞê kirrîn û ji Tirkan re firotin.

*(rudaw.net, 24.10.2014)*

**MILYARDÊREKÎ KURD Ê RÛSYA MILYONEK DOLAR PÊŞKÊŞÎ PENABERAN DIKE**

Milyardêr û parlementerekî kurd ê Rûsya, Zelîm Xan, milyonek dolar da Weqfa Xêrxwaziyê ya Berzanî, ji bo alîkarîkirina penaberên ku li kampên Kurdistana Iraqê dijîn.

***Di 25 Çirî 2014 de***, Zelîm Xan çû seredana Kurdistanê û ji aliyê serokê vê weqfê, Ezîz Şêx Reza, hat pêşwazî kirin. Piştre, her du bi rojnamevanan re peyivîn. Zelîm Xan ji wan re got ku ewê heta mirina xwe alîkarîkirina penaberan dewam bike. Alîkarê serokê vê weqfê, Mûsa Ehmed, ji wan re got ku Zelîm Xan 80 ton alîkariya mirovî, bi nirxê (qîmet) 500.000 dolar, jî aniye.

*(rudaw.net, peyamner.com, avestakurd.net, 25.10.2014)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

**KURDEK TÊ SER JÊ KIRIN**
Ferhad Muhammedî, ji gundê Nêçelanê, ku girêdayî Urmiyê ye, li Birasodstê hat ser jê kirin. Hin dibêjin ku ev yek ji aliyê Dewleta Islamî hatiye kirin, lê tukes sedema wê nizane. Tu daxuyaniyeke fermî (resmî) ne hat kirin. Di salên 1980 de, Muhammedî endamê Partî Dêmokratî Kurdistan (PDKÎ) bû.

Berê mehekê, li Mirgeverê, li nêzîkî Urmiyê, pevçûn di navbera şervanên DAIṢê û pasdaran (polîsê îranî) de derketi bû.
*(rudaw.net, 02.10.2014)*

**ÇALAKÎ JI BO KOBANÎ**

***4 xwepêşandî tên ragirtin***
***Di 08 Çirî 2014 de***, 4 xwepêşandiyên Kobanî, li Kurdistana Sûriyê, li Urmiyê hatin ragirtin û birin ciyekî nenas. Ev yek di dema xwepêşandanekê (meşîn) li hemberî konsulxaneya tirkî de.

Di rojên dawîn de, xwepêşandanên (meşîn) cihê ji bo Kobanî li hemberî vê konsulxaneyê bûn. Xwepêşandiyan ala tirkî şewitand û duruşmên (slogan) weka "Bijî Kurdistan", "Bijî têkoşîna Kobanî", "Bimire dagirker" … avêtin.
*(rudaw.net, 09.10.2014)*

***Nameyeke fîlmçêkerekî kurd ji serokwezîrê tirk re***
Fîlmçêkerê navdar ê ji Kurdistana Îranê, Behmen Qobadî, nameyek ji serokwezîrê tirk Ahmet Davutoğlu re, li ser êrîşên DAIṢê li dijî Kobanî, şand. Wî jê xwest ku piştgiriya şervanên kurd bike û li dawiyê jê re got *"Ji bo Kobanî, ji bo we û ji bo cihanê, sibê ewê gelek dereng bibe"*.

Qobadî xelatên navneteweyî yên cihê, ji bo fîlmên xwe "Kîso jî dikarin bifirrin", "Demek ji bo hespên serxweş" û "Demsala hîppopotamê", stendin.
*(rizgari.org, 09.10.2014)*

***Xwepêşandan û ragirtin***
***Di 09 Çirî 2014 de***, Kurdên Îranê li gelek bajarên kurdî û îranî xwe pêşan da, ji bo riswakirina (protêsto) êrîşên Dewleta Islamî li dijî navçeya Kobanî, li Kurdistana Sûriyê : Pîranşar, Sine, Merîwan, Serdeşt, Bokan, Seqiz, Kirmanşah, Pawe, Rebet, Ciwanro, Mahabad, Tehran, Hemedan, Ṣîraz. Li Tehranê, çend kes hatin ragirtin.

***Di 10 Çirî de jî***, xwepêşandan li Sine û çend navçeyên din bûn. Ev xwepêşandan ji aliyê rêxistinên civaka sîvîl hatin pêk anîn. Ewlehiya (emniyyet) îranî gelek kes li bajarên Bokan, Merîwan û Urmiyê ragirtin.

***Di 12 Çirî de***, komên çalakvanên kurd, tirk û faris ji bo Kobanî li meydana Inqilabê, li Tehranê, xwe pêşan da. Rêxistina Mafên Mirov li Îranê (HRANA) daxuyand ku heta nuha têlêfonên dest (Mobile, GSM) ên van xwepêşandiyan girtî ne û ku ev yek nîşan dide ku ew hatine girtin.
***(rudaw.net, 10 û 14.10.2014)***

***Çalakiyên girtiyan***
Li gora malpera entêrnêtê KurdPa, 4 girtiyên ramyariyî (siyasî) yên kurd li zîndana Recaîşehr, li nêzîkî Tehranê, tabloyeke ku li ser wê « Em hemî rûniştevanên Kobanî ne » hati bû nivîsîn hilgirt.

Berê wan jî, 2 girtiyên din ên kurd li zîndana îranî ya Mînavê piştgiriya xwe ji Kobanî re nîşan da bû.

Li zîndana îranî ya Yezê jî, komeke girtiyan piştgiriya xwe nîşan da bû.
*(rudaw.net, 22.10.2014*

***Daiş êrîşî mala Kurdekî dike***
Li gora malpera kurdî KurdPa, ***di 26 Çirî 2014 de***, şervanên Dewleta Islamî (Daiş) berr (gulle) avêtin mala Kurdekî bajarê Serpêla Zehawê, yê parêzgeha (wilayet) Kirmanşahê û ew bi kuştinê tehdîd kir, ji bo ku wî piştgiriya xwe ji Kobanî re nîşan da bû.

Tê gotin ku Dewleta Islamî kesên ku piştgiriya Kobanî û Şengalê dikin « kafir » bi nav dike.
*(rudaw.net, 27.10.2014)*

**PÊŞMERGE LI DIJÎ DAIŞÊ LI IRAQ Û SÛRIYÊ ŞERR DIKIN**
Serokê Partiya Azadiya Kurdistan (PAK), HuseynYezdan Pena, li konfêranseke çapemeniyê daxuyand ku heta nuha 400 pêşmergeyên partiya wî şerrê Dewleta Islamî li eniyên şerrê Kurdistana Iraqê dikin û ku 100'ên din jî amade ne ku biçin Kobanî, Kurdistana Sûriyê.
*(rizgari.org, 18.10.2014)*

Navenda agahdariyê ya şervanên Kurdistana Sûriyê (YPG) daxuyand ku 4 pêşmergeyên Kurdistana Îranê ji aliyê Dewleta Islamî li Kobanî hatin kuştin û ku bijîjkek (doktor) birîndaran derman dike.
*(rudaw.net, 24.10.2014)*

**ENCUMENA WÊJEYÎ YA KURDÎ YA PAWE TÊ GIRTIN**
***Di 29 Çirî 2014 de,*** Encumena Wêjeyî (edebî) ya Hermanê, li bajarê Pawe, yê parêzgeha kurdî ya Kirmanşahê, ji aliyê hukûmeta îranî hat girtin. Ev yek,

bi behaneya ku bê ku destûreke fermî ji dewletê bixwaze, wê kar kiriye û ku keç û kurr tê de bi hev re kar dikin. Li gora birêvebirê wêjeyî yê vê encumenê, Adnan Muradî, ji berê berpirsiyarên îranî çend caran hişyarî da bû wî ku qedexe ye ku keç û kurr bi hev re kar bikin.

Li gora malpera entêrnêtê KurdPa, ev encumen ji du salan de heye û çalakiyên xwe li pirtûkxaneya bajar dike.

Piraniya 61.000 rûniştevanên bajarê Pawe Kurdên şîî ne.
(rudaw.net, 30.10.2014)

**UN : REWŞA MAFÊN MIROV LI ÎRANÊ XERABTIR DIBE**

Berdevkê birêvebiriya UNê ji bo mafên mirov li Îranê, Ahmed Şahid, rapporek li ser vî welatî amade kir. Wî tê de got ku wî hevpeyivîn bi ji 400 kesan bêtir re, bi riya êlêktronîk, kir, ji bo ku ji 2011 de jê re qedexe ye ku biçe Îranê. Jê derket ku rewşa mafên mirov li vî welatî xerabtir dibe û ku hukûmeta îranî divê ku zagonên (qanûn) xwe yên li ser mafên mirov biguherîne.

Di rapporê de tê gotin ku ji Tebax 2013 heta Hezîran 214, 852 kes hatin bi dar ve kirin (daleqandin). Di 2014 de, 8 kesên bidarvekirî temenê (umr) wan ji 18 salî kêmtir bû. 66% ji jinan li bin metirsiya (tehlike) tundiya (şiddet) malbatî ne. Ji Hezîran 2014 de, nêzîkî 300 kes ji sedema ola (dîn) xwe hatin ragirtin û ji kêmasî ve 35 rojnamevan li zîndanê ne. Di 2014 de jî, xwediyên 11 malperên entêrnêtê hatin ceza kirin, 8 kesên ku facebook'ê bi kar anî hatin ragirtin û yek ji wan cezayê 20 sal zîndan stend.
(rudaw.net, 28.10.2014)

# KURDISTANA SÛRIYÊ

**LIHEVKIRINA PARTIYÊN RAMYARIYÎ YÊN KURDÎ LI KURDISTANA IRAQÊ**

Serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, li Duhokê berpirsiyarên partiyên ramyariyî (siyasî) yên Kurdên Sûriyê (PYD, ku girêdayî PKKê ye, û Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê, ku ji partiyên kurdî ku ne PKK ne pêk hatiye) civandin. ***Di 22 Çirî 2014 de***, piştî çend rojên giftûgoyan (munaqeşe), her du alî li hev kir ku bi hevre "kanton"ên kurdî li Sûriyê bi rê ve bibin (idare bikin) û ku hêzeke leşkerî ya yekbûyî pêk bînin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, nefel.com, peyamner.com, 22.10; kurdwatch.org, 24.10.2014)*

**SEREDANÊN PARTIYÊN RAMYARIYÎ KURDISTANA ÎRAN Û TIRKIYÊ**

Piştî vê civîna Duhokê bi serok Berzanî re, her du şandên kurdî yên jorîn çûn seredana buroyên du partiyên ramyariyî yên Kurdên Îranê, ku li Kurdistana Iraqê ne : Partî Dêmokratî Kurdistan û Partî Dêmokratî Kurdistan-Îran. A pêşîn ji wan re got ku ew amade ye ku pêşmergeyan bişîne Kurdistana Sûriyê, eger ev yek jê bê xwestin. A duyemîn got ku ew xebateke agahdarkirinê li ser Kurdistana Sûriyê, li bal gelheya kurdî û civaka navneteweyî, dike.

Piştre, her du şand çûn Çiyayê Qendîlê, di navbera Kurdistana Iraq û Tirkiyê de, û tê de ji aliyê berpirsiyarên KCKê (Komela Civaka Kurdistan, ku girêdayî PKKê ye) hatin pêşwazî kirin. Ev berpirsiyar ji wan re piştgiriya xwe ji lihevkirina Duhokê re nîşan da.
*(rizgari.org, rudaw.net, 29.10.2014)*

**DEWLETA ISLAMÎ 325 GUNDÊN KOBANÎ STENDIN**

Çavdêrgeha Mafên Mirov li Sûriyê daxuyand ku ***ji 15 Îlon 2014 de***, DAIŞê 325 gundên li dora Kobanî dagir (işgal) kirin. Û wê got jî ku nêzîkî 800 sîvîlên kurd ji aliyê DAIŞê hatin girtin û ku çarenivîsa (qeder) wan ne diyar e.

***Di 30 Îlon 2014 de***, DAIŞê ji zîndanên xwe 78 xwendekarên kurd û 25'ên din ku hîn li zîndana bajarê Munbicê bûn azad kirin.
*(rudaw.net, peyamner.com, rizgari.org, 01.10.2014)*

**ÊRÎŞÊN EZMANÎ YÊN AMERÎKA Û HEVALBENDÊN WÊ YÊN EREBÎ**

***Ji 23 Îlon de***, Amerîka û hevalbendên wê êrîşên ezmanî li ser bingehên Dewleta Islamî li Sûriyê, Kobanî jî tê de (li bultena me ya buhurî, N° 114, binêre), dike. Li Iraqê, ev êrîş di 08 Tebax 2014 de, bi piştgiriya gelek bêtir welatan, dest pê kiri bû.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 01.10.2014)*

**LEŞKERÊ AZAD Ê SÛRÎ LI KOBANÎ**

Serokê Leşkerê Azad ê Sûrî (dijberiya erebî ya libêral), Abdul-Jebbar El-Igêdî, daxuyand ku 200 ji serbazên (esker) wî li Kobanî, li tenişta YPG (Yekîneyên Parastina Gel, ên partiya kurdî PYD, ku girêdayî PKKê ye) şerr dikin û ku ewê serbazên din jî xwe bigihînin wan.
*(rudaw.net, rizgari.org, 29.10.2014)*

**PARTIYÊN KURDISTANA TIRKIYÊ LI KOBANÎ**

***Di 04 Çirî 2014 de***, bi hinceta (munasebet) cêjna misilman a qurbanê, komeke parlementer û berpirsiyarên HDP (partiyeke kurdî-tirkî), DBP û KCD (partî û rêxistineke kurdî), ku hemî nêzîkî PKKê ne, çû Kobanî.

Ew tê de ji aliyê hev-seroka PYD (baskê sûrî yê PKKê), Asya Abdullah, û berpirsiyarên "Kantona Kobanî" hatin pêşwazî kirin. Piştre, şand ji riya Murşit Pınarê vegeriya Kurdistana Tirkiyê. Li wê derê, parlementera HDP ya Isanbulê, Sebahat Tüncel, daxuyand ku êrîşên ezmanî yên Amerîka û hevalbendê wê baş in, lê ku gelek dereng dest pê kir. Û wê got jî ku gelek şervanên DAIŞê hatin kuştin, ku têkoşîna Kobanî dîrokî ye û ku loma divê ku hukûmeta tirkî û welatên din piştgiriya vê liberxwedanê bikin.

Şand ji Figen Yüksekdağ, hev-seroka HDP; parlementerên vê partiyê, Ertuğrul Kürkçü, parlementerê HDP; Ibrahim Ayhan, Ibrahim Binici, Faysal Sarıyıldız, Kemal Aktaş, Sebahat Tüncel û hev-seroka Diyarbekirê Gülten Kışanak û Seydi Fırat, endamên encumena rêxistina KCD, pêk hati bû.
*(rudaw.net, 04.10.2014)*

**ŞANDA PARLEMENTA KURDISTANA IRAQÊ Û PARTIYA KURDÎ-TIRKÎ "HDP" LI SÎNORÊ KOBANÎ**
***Di 08 Çirî 2014 de***, şandeke Parlementa Kurdistana Iraqê û yeke din a partiya kurdî-tirkî HDP çûn sînorê Kobanî. Parlementerê HDP, Ibrahim Binici, şaredariya Riha (Urfa) rexne kir, ji bo ku wê alîkarî ji şaredariya Pirsûsê (Sirûc), ku bi penaberên Kobanî xerîk (mijûl) e, pêşkêş ne kir.
*(rudaw.net, 08.10.2014)*

**LI HESÎÇÊ 16 GIRTÎ REVIYAN**
***Di 05 Çirî 2014 de***, piştî bombekirinên Hesîçê, li Kurdistana Sûriyê, ji aliyê hevalbendiya navneteweyî , 30 şervanên Dewleta Islamî hatin kuştin û 16 ji girtiyên wan reviyan.
*(rudaw.net, 06.10.2014)*

**ŞERR LI SERÊ KANIYÊ**
***Di 13 Çirî 2014 de***, şervanên DAIŞê êrîşî gundê Til Xinzîrê, ku girêdayî Serê Kaniyê, li Kurdistana Sûriyê, ye kir. YPG bersîv da û 18 ji wan kuştin.
*(peyamner.com, 19.10.2014)*

**RAPPORA ÇAVDÊRGEHA MAFÊN MIROV LI SÛRIYÊ**
***Di 23 Çirî 2014 de***, Çavdêrgeha Mafên Mirov li Sûriyê, ku li Londonê ye, rapporek li ser jimara islamiyên ku li navçeyên cihê yên Sûriyê, Heleb, Dêr El-Zor, Idlib, Reqqa û Hesîçê, hatin kuştin weşand. Wê tê de got ku heta nuha ji 500 islamî bêtir hatin kuştin, ku ji wan 464 ên Dewleta Islamî û 57 ên Jebhet El-Nasra ne. Û wê got jî ku 32 sîvîl jî, ku ji wan 6 zarok, hatin kuştin.
*(rudaw.net, 23.10.2014)*

**REWŞA PENABERAN**

***Sînorê Kurdistana Tirkiyê***
Rûniştevanên Kobanî ber bi Kurdistana Tirkiyê reviyan. Jimareke mezzin ji wan li sînor çikiya ne. DAIŞ û hin sîvîlên ereb ên navçeya Girê Sipî bi dehan erebeyên gundên Rojhilata Kobanî dibin. Ji aliyekî din, leşkerê tirkî derbasbûna erebeyên penaberên Kobanî giran dike û li ser êrîşên DAIŞê bêdeng dimîne.
*(rudaw.net, rizgari.org, 02.10.2014)*

Şervanên DAIŞê nêzîkî 1.000 penaberên ku li sînor asê bûne dorpêç kirin. ***Di 02 Çirî de***, wan du ji van penaberan ser jê kirin. Xaça Sor a sûrî tecrube dike ku birîndarên Kobanî derbas bike.
*(rudaw.net, 02 û 03.10.2014)*

Birêvebiriya Kantona Kobanî bangeke lezgîn ji civaka navneteweyî re, ji bo vekirina korrîdoreke mirovî ji bo sîvîlên ku li Kobanî mane, kir.
*(rudaw.net, avestakurd.net, rizgari.org, 10.10.2014)*

Rojnamevanê kurd Baran Misko, ku li sînorê Kobanî ye, ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re got ku rewşa sîvîlên ku tê de ne, bi taybetî ya zarokan, gelek xerab e û ku ew ji nebûna xwarin û dermanan dêşin. Û wî got jî ku jimareke mezzin ji wan li sînorê Tirkiyê çikiyaye, ji bo ku ev welat nahêle ku ew derbasî Kurdistana Tirkiyê bibin.
*(rudaw.net, 28.10.2014)*

***Kurdistana Iraqê***
Rêxistina Xêrxwaziyê ya Berzanî, ya Kurdistana Iraqê, destgehên dibistanî belav kirin 9.000 xwendekarên Kurdistana Sûriyê ku li kampên penaberan, ên Kelek, Basirme, Beherke, Dareşekran, Gwêlan, Akrê û Domizê, li Kurdistana Iraqê, dijîn.
*(rudaw.net, 01.10.2014)*

***Di 10 Çirî 2014 de***, piştî biryara serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, nêzîkî 500 penaberên Kobanî ji deriyê sînorî yê Pêş Xabûrê, di navbera Kurdistana Tirkiye û Iraqê de, derbas bûn Kurdistana Iraqê. Li gora agahdariyên fermî (resmî), heta nuha, nêzîkî 173.000 penaberên Kobanî derbas bûne Kurdistana Tirkiyê.
*(rudaw.net, avestakurd.net, 11.10.2014)*

***Rappora "Kobani Crisis Coordination"***
Li gora rapporeke nuh a "Kobani Crisis Coordination" (KCC), rewşa van penaberan gelek xerab e : Baran û serma dikarin bi hezaran kes bikujin, bi hezaran zarok nikarin biçin dibistanê. Pêwîstiyên wan ên bingehîn, ku ji wan vekirina konên ku ji aliyê rêxistina tirkî AFADê hatine şandin, ji aliyê xelkê navçeyê (Kurdên Tirkiyê) hat dabîn (te'mîn) kirin. Li gel vê yekê, bitenê 6.000 ji wan kari bû tê de bi cî bibin.

Li gora vê rapporê, 35.000 penaber nuha li Riha (Urfa), 15.000 li Birecikê, 4.000 li Siverekê, 600 li Ceylanpınarê, 3.000 li Hilvanê û 12.000 jî li Bozava ne. 20.101 li Sirûcê hene. Ji wan 9.864 li bin konan li navenda Sirûcê û 17.000 jî li gundên vî qezayî, li malan, avahiyên ku hîn temam ne bûne û enbaran dijîn.

Li gora rapporê, penaberên din li hin bajarên din ên Kurdistana Tirkiyê bi cî bûne : 11.000 li Amedê (Diyarbekir), 4.000 li Mêrdînê, 5.500 li Semsûrê (Adıyaman), 4.500 li Entabê (Gaziantep), 3.000 li Meletî (Malatya) û 1.800 li Antalya.

Tê texmîn kir ku ji 250.000 - 300.000 rûniştevanên Kobanî ku ber bi bajarên Tirkiyê û Kurdistana Tirkiyê reviyan, 7.000 ji sînorê Kurdistana Iraqê derbas bûn.

Rappor gelek pêşniyaran ji civaka navneteweyî, hukûmeta tirkî û Kurdan re dike ku gavên lezgîn bavêjin, ji bo rawestandina pêşdeçûna Dewleta Islamî û alîkarîkirina penaberan.
(Middle East Diplomatic (MED), 13.10.2014)

## "PYD" LI DIJÎ KURDÊN DIN

***Di 01 Çirî 2014 de***, servîsên ewlehiyê (emniyyet) yên PYD, Asayiş, çalakvanekî kurd, Muhammed Hesso, endamê Partiya Yekîtiya Dêmokrat a Kurdî li Sûriyê, azad kir. Ew di 05 Îlon 2014 de hati bû revandin û êşkence kirin.
(kurdwatch.org, 06.10.2014)

***Di 04 Çirî de***, Asayişê xwepêşandaneke (meşîn) ji bo Kobanî, ku li Til Temrê ji aliyê Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS, ku tê de partiyên ku ne girêdayî PKKê ne hene) hat pêk anî qedexe kir û xwepêşandî belav kirin. Û wê 4 berpirsiyarên vê encumenê jî ragirtin û ew bi qewirandina ji Sûriyê tehdîd kirin, eger ew di siyasetê de çalak (aktîf) bimînin.
(kurdwatch.org, 09.10.2014)

***Di 05 Çirî de***, Asayişê dest danî ser buroyên Encumena Niştimanî ya Kurdî û partiya kurdî Yekîtî, li qezayê Til Temrê.

Nimînendeyê partiya Yekîtî, Newwaf  Reşîd, ji ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê re daxuyand ku Asayişê bi 6 erebeyên tijje çekk ew dorpêç kirin, hemî endaman derxistin û berpirsiyarek ragirt. Û wî got jî ku sedema vê yekê ew bû ku berê rojekê, di 04 Çirî de, ENKSê  ji bo piştgirîkirina Kobanî xwe pêşan da bû (meşiya bû), bê ku ji berê ji PYD destûr (izn) bistîne.
(rudaw.net, 05.10; kurdwatch.org, 13.10.2014)

Sempatîzanên PYD û PKKê li Hewlêrê, li Kurdistana Iraqê, ji bo Kobanî xwe pêşan da. Nûçegihanê Rûdawê, Hejar Ergoşî, hat êrîş û birîndar kirin.
(avestakurd.net, 08.10.2014)

***Di 11 Çirî de***, sempatîzanên PKKê ne hişt ku nûçegihanê Rûdawê, Zina Şîno, xwepêşandaneke mezzin ji bo Kobanî bişopîne.
(rudaw.net, 11.10.2014)

Asayişê dest bi ragirtina cuhanên 18-30 salî û sixtina wan nav otobusan, li navçeyên kurdî yên Qamişlî, Dêrik, Girkê Legê, Çil Axa û Amûdê, kir. Piştre, wê ew li kampên perwerdeya leşkerî (xizmeta leşkerî ya neçarî "icbarî") bi cî kirin.
(avestakurd.net, 12.10.2014)

***Di 11 Çirî de***, Asayişê endamekî Partiya Yekîtî, Melle Ehmed, demjimêrek (saetek) li Qamişlî ragirt. Ehmed, ku weka rojnamevan kar dike, tecrube kiri bû ku fotoyên karmendên Asayişê, dema ku wan cuhan neçar dikirin ku bibin serbaz (esker), bikişîne. Ew ne hat êşkence kirin.
(kurdwatch.org, 16.10.2014)

***Di 14 Çirî de***, Asayişê cuhanên 18-30 salî li kuçeyên navçeyên ku li bin çavdêriya (kontrol) PYD de ne revandin. Piraniya wan piştî rojekê hatin azad kirin, lê diviya bû ku ew wajo (imza) bikin ku ewê ji welat dernekevin û ku ew hergav amade ne ku li bal YPG şerr bikin, eger na, ewê malbatên wan cezayekî 500.000 lîreyên sûrî bidin. Tê bawer kirin ku jimara giştî ya van cuchanan digihêje 3.000, ku ji wan Ereb û Fille.

Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) bi daxuyaniyekê ev kirin tawanbar kir û tê de got ku ewê cuhanan dehf bide ku ji navçeyên kurdî derkevin.
(kurdwatch.org, 16.10.2014)

***Di 14 Çirî de***, 4 jinên çalakvan hatûçûnê li Amûdê rawestand û duruşmên (slogan) xwestina azadkirina cuhanên ku ji aliyê Asayişê, ji bo leşkeriya neçarî, hatine revandin bilind kirin. ***Di 17 Çirî de***, cardin nêzîkî 30 jin ev yek riswa (protêsto) kir, lê tu bûyer derneket.
(kurdwatch.org, 20 û 28.10.2014)

***Di 15 Çirî de***, nêzîkî 25 jin li Qamişlî xwe pêşan da (meşiyan), ji bo riswakirina revandina kurr û birayên xwe ji aliyê Asayişê, ji bo xistina wan nav YPG, yekîneyên çekdar ên partiya PYD, ku girêdayî PKKê ye. Xwepêşandan nîv demjimêr ajot. Guwahek (şahid) ji Kurdwatchê re got ku Asayişê li jinekê xist û yên din ji tirsan çalakiya xwe rawestand.
(kurdwatch.org, 24.10.2014)

Li Sirûcê, li Kurdistana Tirkiyê, nûçegihanekî têlêvîzyona "Orient", Welat Bekir, dixwest ku rapporekê li ser penaberên Kobanî amade bike. Sempatîzanên PYD lê xist û ew birîndar kir.
(avestakurd.net, 27.10.2014)

## PIŞTGIRIYA KURDAN JI KOBANÎ RE

***Banga 39 ronakbîran***
39 ronakbîrên kurd ên welatên cihê bangeke piştgiriya Kobanî kir û piştgiriya Tirkiyê ji Dewleta Islamî re tawanbar kir.
(Hoşeng Osê, 09.10.2014)

***Alîkariya Kurdekî Amerîka***
Karsaz (businessman) Hamid Ulukaya, Kurdekî Tirkiyê ku li Amerîka dijî, alîkariyeke 2 milyon dolar da penaberên Kobanî li Tirkiyê. Ew xwedî şirketeke berhemên şîr e û navê wî hatiye kirin "Bavê Mastê Çobanî".
*(avestakurd.net, 09.10.2014)*

***Piştgiriya Kurdistana Iraqê***
Serokê Iraqê, Muad Mahsûm, ku Kurd e, bangî Amerîka kir ku Kobanî li hemberî êrîşên DAIṢê biparêze.
*(rudaw.net, 09.10.2014)*

***Di 12 Çirî 2014 de***, serokwezîrê Kurdistana Iraqê, Nêçîrvan Berzanî, daxuyand ku hukûmeta wî bi Amerîka re hemahengî (coordination) dike, ji bo şerkirina li dijî DAIṢê li Kobanî û ku wê alîkariya mirovî û çek şandin wê derê.
*(nefel.com, 13.10.2014)*

Serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, ji kanala têlêvîzyona erebî Sky News re daxuyand ku hukûmeta wî alîkariya Kobanî kiriye û ku eger Tirkiye li dijî Kurdistana Sûriyê derkeve, ewê ev hukûmet siyaseta xwe ya pê re biguherîne.
*(nefel.com, avestakurd.net, 13.10.2014)*

Sekreterê giştî yê wezareta pêşmerge ya Kurdistana Iraqê, Cebbar Yawer, daxuyand ku wezareta wî 3.000 şervanên ENKS (Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê, ku ne girêdayî PKK û PYD ne) perwerde dike.
*(nefel.com, 18.10.2014)*

***Xwepêşandan li Almanya***
***Di 11 Çirî 2014 de***, bi deh hezaran Kurd li Dussuldorfê, ji bo Kobanî, xwe pêşan da. Û wan helwesta Tirkiyê li hemberî DAIṢê jî rexne kir.
*(rudaw.net, peyamner.com, 11.10.2014)*

**HELWESTA NE ZELAL A TIRKIYÊ**

***Parlementa tirkî***
***Di 02 Çirî 2014 de***, parlementa Tirkiyê bi piraniyeke mezzin deng da biryareke ku destûr (izn) dide leşkerê tirkî ku li derveyî Tirkiyê bilive.
*(Çapemeniya kurdî, 03.10.2014)*

***Serokwezîrê tirk***
Serokwezîrê nuh û wezîrê berê yê tirk ê karên derve, Ahmet Davutoğlu, ji rojnamevanan re daxuyand ku PYD şaşiyên mezzin kirin û ku ew nuha encamên wan dikişîne. Wî got ku vê partiyê guhdariya 3 şîretên jêrîn ên Tirkiyê ne kir :

- Hevkarî bi Leşkerê Azad ê Sûrî re (dijberiya erebî ya laîk, ku di heman "eynî" zemanî de li dijî rejîma serokê sûrî Beşşar El-Esed û Dewleta Islamî şerr dike).

- Xwedûrxistin ji rejîma serokê sûrî (partiyên din ên kurdî jî dibêjin ku PYD di têkoşîna xwe li dijî DAIṢê de bi rejîma sûrî re hevkarî dike).

- Baştirkirina pêwendiyên xwe bi Tirkiyê re.

Davutoğlu got jî ku eger PYD guhdariya wî bikira, ewê Dewleta Islamî ewqas xurt ne dibû.
*(rizgari.org, 02.10.2014)*

***Bombekirina DAIṢê li Kobanî***
Firokeyên leşkerî yên tirkî F-16 li ser Kobanî firriyan û çavdêriya (kontrol) bingehên DAIṢê kir. Piştre, leşkerê tirkî ev bingeh bi OBUS'an bombe kirin.
*(rudaw.net, 03.10.2014)*

***Seredana hev-serokê PYD, Salih Muslim, Tirkiyê***
***Di 04 Çirî 2014 de***, hev-serokê PYD, Salih Muslim, çû Tirkiyê û tê de rastî servîsên dizzî yên tirkî "MIT" û hin ramyarên (siyasî) "rexnegir" (krîtîk) hat. Ev seredan piştî rasthatina hev-serokê partiya kurdî-tirkî HDP, Selahettin Demirtaş, bi serokwezîrê tirk Ahmet Davutoğlu re bû. Evê dawîn ji kanala têlêvîzyona ATV re daxuyandi bû ku Tirkiye naxwaze ku Kobanî ji aliyê DAIṢê bê stendin û ku ewê di vî warî de hertiştî bike.

Berpirsiyarên tirk ji Salih Muslim re got ku divê ku PYD yekîtiya axa sûrî biparêze, pêvajoya aşîtiyê (rawestandina şerrê Tirkiyê li dijî PKKê) tehdîd neke, helwesta xwe li hemberî rejîma sûrî ya Beşşar El-Esed biguherîne (pê re hevkariyê li dijî DAIṢê neke) û bi dijberiya (muxalfet) sûrî ya lîbêral re hevkariyê bike.

PYD ji helwesta Tirkiyê aciz e û wê bi nealîkarîkirina Kurdan di parastina Kobanî de tawanbar (bi sûc) dike.
*(rudaw.net, peyamner.com, rizgari.org, 05.10.2014)*

***Bicîkirina 20 tankan li hemberî Kobanî***
Leşkerê tirkî 20 tank li ser gireke ku li hemberî Kobanî ye û li deriyê sînorî yê MurşitpInarê bi cî kirin.
*(rudaw.net, 06.10.2014)*

***Ragirtina 158 karmendên Kantona Kobanî***
Servîsên ewlehiya (emniyyet) tirkî 158 karmendên (me'mûr, muwazzaf) Kantona Kobanî, dema ku ew ji sînorê Tirkiyê derbas dibûn, ragirtin û ew li eywaneke werzişê (sport), li Alî Gorê, zîndan kirin.
*(avestakurd.net, 07.10.2014)*

***Kuştina 16 xwepêşandiyan ji bo Kobanî***
***Di 07 Çirî 2014 de***, xwepêşandan (meşîn) ji bo Kobanî li çend bajarên Kurdistana Tirkiyê bûn. Polîs êrîşê xwepêşandiyan kir. Bi giştî, 16 kes hatin kuştin : 8 li Diyarbekirê, 2 li Mêrdînê, 2 li Dargeçit (Kerboran) û Dêrikê, 2 li Sêrtê (Siirt), 1 li Batmanê û 1 li Mûşê.

Ji sedema van bûyeran, ewê zanîngeh û dibistanên Mardîn, Hekarî, Wan û bajarên din 3 rojan bên girtin. *(rudaw.net, avestakurd.net, nefel.com, rizgari.org, 08.10.2014)*

**ROJAVA LI HEMBERÎ NEZELALBÛNA TIRKIYÊ**

***Amerîka***
Li gora ajansa rûsî Tassê, cîgirê serokê amerîkî, Joe Biden, ji zanîngeha amerîkî ya Harvardê re daxuyand ku Tirkiye û Erebistana Suûdî bi milyonan dolar û barhilgirên (kamyon) tijje çek dan rêxistinên têrrorîst ku şerrê dewleta sûrî dikin. Lê ku piştre ew têgihîjtin şaşiyên xwe û xwe gihand hevalbendiya navneteweyî ku li dijî Dewleta Islamî şerr dike.
*(rudaw.net, 03.10.2014)*

Berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Jen Psaki, di yek ji konfêransên xwe yên çapemeniyê yên rojane de got ku bernameya perwerdeyê û dayîna çekkan ji dijberiya sûrî re ne bitenê ji bo têkoşîna li dijî Dewleta Islamî ne, ji bo ku ev dijber (muxalif) ewê karibin wan li dijî rejîma sûrî ya Beşşar El-Esed jî bi kar bînin.
*(rizgari.org, 04.10.2014)*

Piştî rêaksyonên serokê tirk Recep Tayyıp Derdoğan, û serokwezîr Ahmet Davutoğlu, Biden ji wan buhurandin (efû) xwest.
*(rudaw.net, 05.10.2014)*

Wezîrê amerîkî yê parastinê, Chuck Hagel, ji Tirkiyê xwest ku helwesta xwe li hemberî Dewleta Islamî zelal bike.
*(rudaw.net, peyamner.com, 11.10.2014)*

Li gora rojmaneya amerîkî Los Angelesê Timesê, ya 12 Çirî 2014, wezareta amerîkî ya parastinê (Pentagon) daxuyand ku Tirkiyê pejirand (qebûl kir) ku Amerîka ji bingehên wê yê ezmanî êrîşî DAIŞê li Sûriyê bike.
*(nefel.com, rudaw.net, 13.10.2014)*

Alîkara berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Marie Harf, di konfêranseke çapemeniyê de got ku PYD ne weka PKKê ye. Ev yek, weka bersîvadayîna nûçegihanê ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê, Namo Abdullah, ku jê pirsî gelo PYD, weka PKK, li ser lîsta têrrorîst a Amerîka ye, bû.

Di bersîva xwe de, Harf got ku serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan goti bû ku PKK û PYD heman in (eynî ne) û ku her du jî rêxistinên têrrorîst in.

Tê zanîn ku pêwendiyên rasterast (direct) ên Amerîka bi PYD re hene. Eva dawîn daxuyandi bû ku pêwendiyên wê bi Amerîka re ji du salan de hene, lê ku ev yek ne hati bû aşkere kirin ji bo ku Tirkiye aciz nebe.
*(rudaw.net, 21.10.2014)*

***Almanya***
Cîgira serokê parlementa almanî, Claudia Roth, ji kanala têlêvîzyona almanî ZDF re daxuyand ku ew ji siyaseta serokê tirk Recep Tayyıp Erdoğan li hemberî Dewleta Islamî bi gûman e (bi şik, şubhe), ji bo ku wî ne firotina çakkan ji vê rêxistinê re, ne kirrîna pêtrola wê û ne jî dermankirina endamên wê yên birîndar ranewestandin. Û wê got jî ku vê havînê, DAIŞê kampek li Istanbulê vekir û ku loma Kurdên Tirkiyê ji siyaseta vî welatî di "pêvajoya aşîtiyê" (rawestandina şerrê li dijî PKKê û dîtina çareyeke siyasî ji pirsa kurdî li Tirkiyê) de bigûman in.
*(rudaw.net, 05.10.2014)*

Serokwezîra alman Angela Merkel li encumena pêwendiyên derve yên parlementa almanî Tirkiye rexne kir û got ku wê tutişt ne kir û erkê (wezîfe) xwe li hemberî Dewleta Islamî bi cî ne anî.
*(rudaw.net, 09.10.2014)*

Polîsê almanî ket nav bi dehan malên kesên ku nêzîkî yan jî endamên DAIŞê ne, 15 kes ji wan ragirtin û 3 zîndan kirin.
*(rudaw.net, 20.10.2014)*

***Parlementa Baskî (Ispanya)***
Encumena pêwendiyên derve ya parlementa herêma otonom a baskî bi yekdengî daxuyand ku amanca sereke ya DAIŞê têkbirina gelê kurd e, ji Tirkiyê xwest ku piştgiriya xwe ji DAIŞê re rawestîne û bangî wê kir ku sînorên xwe ji penaberên Kobanî re veke.
*(rudaw.net, 21.10.1014)*

**ROJAVA Û DEWLETA ISLAMÎ**

***Entêrnasyonal Sosyalîst***
Entêrnasyonal Sosyalîst, ku 160 endamên wê ji 100 welatan hene, bangî civata navneteweyî kir ku tevgerên nêrbarî (concret) li dijî Dewleta Islamî bi cî bîne, ji bo ku nehêle ku li Kobanî karesateke (catastrophe) mirovî bibe.
*(Middle East Diplomatic (MED), 04.10.2014)*

***Neteweyên Yekbûyî***
Sekreterê giştî yê UNê, Ban Ki-Moon, bang kir ku tevgereke tavil (nuha, pirr acil) ji bo parastina sîvîlan li Kobanî bê kirin.
*(Middle East Diplomatic (MED), rizgari.org, 07.10.2014)*

Şandê taybetî yê UNê li Sûriyê, Stefan de Mestura, ji civaka navneteweyî xwest ku Kobanî li dijî êrîşên terrorist ên DAIŞê biparêze.
*(rudaw.net, rizgari.org, 08.10.2014)*

Şandê taybetî yê UNê li Iraqê, Nikolay Mladenov, li Hewlêrê rastî serokê parlementa Kurdistana Iraqê, Yûsif Muhammed, hat. Evê dawîn jê re got ku divê ku civata navneteweyî Kobanî, weka ku wê li Şingalê, li

Kurdistana Iraqê, kir, biparêze û 2 rapporan li ser vê babetê dan wî.
*(rudaw.net, 12.10.2014)*

***Parlementa Ewropî***
Nêzîkî 600 Kurd li hemberî Parlementa Ewropî li Bruksêlê xwe pêşan da. 100 ji wan ketin hundir û ji aliyê parlementerên ewropî hatin pêşwazî kirin. Serokê vê parlementê, Martin Schulz, kirinên têrrorist ên DAIŞê tawanbar kirin û soz da xwepêşandiyan ku peyama (message) wan bigihîne NATOyê.

Gianni Pittela, serokê koma sosyalîst; Gabi Zimmer, seroka koma çeppê yekbûyî/keskên skandînavî; Ana Gomez, endama koma S-D û gelek endamên din ên komên keskan û çep bi xwepêşandiyan re giftûgo kir û piştgiriya xwe ji wan re ravekir (got).
*(Middle East Diplomatic (MED), 07.10.2014)*

***Yekîtiya Ewropî***
Nimînendeya (temsîlcî) siyaseta derve ya Yekîtiya Ewropî, Catherine Ashton, daxuyand ku ew ji bo rewşa Kobanî, ji aliyê ewlehiyî û mirovî, bi endîşe ye û bang kir têkoşîneke firehtir li dijî têrrorîstên Dewleta Islamî.
*(Middle East Diplomatic (MED), 10.10; rizgari.org, 12.10.2014)*

***Amerîka***
Cîgirê berê yê serokê amerîkî, Dick Cheney, daxuyand ku metirsiyeke (tehlike) mezzin heye ku DAIŞ çekkên atomî bi kar bîne. Û wî got jî ku ev metirsî ji ya 11 Îlon 2001 mezzintir e.
*(rudaw.net, 15.11.2014)*

Rawêjkarê (muşawir) amerîkî ji bo ewlehiya (emniyyet) neteweyî, Tony Blinken, daxuyand ku welatê wî dest bi perwerdekirina şervanên dijberiya sûrî ya liberal kiriye.
*(rudaw.net, 16.10.2014)*

Berdevka wezareta amerîkî ya karên derve, Jen Psaki, daxuyand ku berpirsiyarên amerîkî rastî PYD û ENKS, her yek ji xwe re, li Kurdistana Iraqê hatin.
*(rudaw.net, avestakurd.net, rizgari.org, 17.10.2014)*

***Brîtanya Mezzin***
Avaker û serokê encumena birêvebir a koma brîtanî ya şirketên Virgin, ku li cihanê navdar e, bangî Tirkiyê kir. Wî got ku divê ku ew Kurdan weka dijmin nebîne û piştgiriya Kobanî bike.
*(avestakurd.net, 17.10.2014)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ LI SER ŞINGAL Û KOBANÎ

***Pevçûn di navbera bi sedan Kurd û Islamiyan de li Almanya***
Piştî êrîşên DAIŞê li dijî Şingal û Kobanî, bi hezaran Kurd li herderê Almanya bi aşîtiyane xwe pêşan da. Lê islamiyan bi tundî, bi kêr, dar …, êrîşî wan kir.

***Di 06 Çirî 2014 de***, nêzîkî 100 Kurdên yezîdî û islamiyan li Celle, li Almanya, şerr kir. Ji van islamiyan, Çeçen jî hebûn. 6 kes birîndar bûn. Rûniştevanên taxa Neunhaeusenê bangî polîs kir. 70 polîs hatin û ew belav kirin. Dozek (da'wa) li dijî hin êrîşkeran hat vekirin.

Berê çend hefteyan, piştî nijadkujiya Şingalê, Islamiyan êrîşî xwaringeheke (rêstoran) Kurdên yezîdî li Herfordê kiri bû. Jimara van Kurdên yezîdî li Almanya digihêje nêzîkî 100.000 û tê bawer kirin ku ew bi taybetî li Cellê dijîn.
*(rudaw.net, 07.10.2014)*

***Di 07 Çirî de***, pevçûnên din di navbera nêzîkî 800 Kurd û islamiyan li Hamburgê, heta dereng di şevê de, bûn. 1.200 polîsên alman ketin navbera wan. 20 kes birîndar bûn û 22 hatin bin çav kirin. Piraniya wan di heman (eynî) şevê de hatin azad kirin.
*(rudaw.net, 09.10.2014)*

***200 Kurdên Ewropa xwe digihînin şervanên Kurdistana Iraq û Sûriyê***
Nêzîkî 200 Kurd ji Swêdê û 10 ji Norvêjê çûn, ji bo ku li tenişta pêmergeyên Kurdistana Iraqê û YPG'yên Kurdistana Sûriyê şerr bikin.
*(rudaw.net, 13.10.2014)*

***Kovara almanî Der Spiegel***
Mezintirîn heftenameyên almanî, Der Spiegel, 900.000 tîraj, şerrê Kurdan li dijî DAIŞê li ser berga xwe daxuyand : "Alleingegen den Terror. Der IS-Vormarschund der einsame Kampt der Kurden" (Bi tenê li dijî Têrrorê. Pêşdeçûna Dewleta Islamî û şerrê bi tenê yê Kurdan).
*(peyamner.com, 27.10.2014)*

***Rojnameya almanî Bild***
Rojnameya almanî Bild, 2,45 milyon tîraj, nameyeke nivîskar Franz Josef Wagner ji Kurdan re weşand. Ew tê de dibêje : *Cihan li ber şerrê we li dijî serjêkeran, xwediyên ala reş, şaş maye. Hûn kî ne, Hey qehreman ? Hûn hergav stranên evîn û welatên hunda distirên … Kîjan welat ? Kurdistan …. Wan ziman û cillên we qedexe kirin … Yek ji şervanan got : "Ez fîşeka xwe ya dawîn ji xwe re dihêlim. Ez nahêlim ku serê min jêkin". Çi qehreman ! muyên laşê min radibin".*

***Kurdên Israîlê li ser Tirkiyê hêrs bûne***
Serokê Rêxistina Kurdên Israîlê, Yahûda Bin Yûsif, di dema merasîma "Saharanî" de daxuyand ku Tirkiye lîzeke dualiyî li hemberî Kurdan dilîze û ku wê tutiştî ji bo rawestandina êrîşên Dewleta Islamî ne kir.
*(rudaw.net, 27.10.2014)*

***Navê zarokekî penaber bû "Obama"***
***Di 22.10.2014 de***, malbateke penaberên Kobanî zarokekî wê li kampeke nêzîkî Sirûcê, li nêzîkî Riha (Urfa), li Kurdistana Tirkiyê, bû. Wê navê wî kir "Obama" !
*(avestakurd.net, 27.10.2014)*

***Di hefteyekê de Rûdaw bû çavkaniya 21 rojname û malperan li cihanê***
Di demên dawîn de, nûçeyên ajansa çapemeniya kurdî Rûdawê bûn çavkaniyên 21 rojname û malperên entêrnêtê li cihanê : New York Times, CNN, Los Angeles Times, Bloomberg, Foreign Policy, BBC, The Wall Street Journal, El-Jezîra, Businessweek, South London, Middle East Eye, CNN Türk, Milliyet, Hürriyet, The Sydney Morning, N24 German, Le Monde, The Sun, De Morgen, NOS, Daily Star.
*(rudaw.net, 28.10.2014)*

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ LI CIHANÊ

**ERMENISTAN**
***Di 29 Îlon 2014 de***, mêmoryaleke ku tê de çend peyker (heykel), ku ji wan tawûsê Kurdên yezîdî û xaçeke ermenî hene, li Aknalişê, bajarekî piçûk ê parêzgeha Armavirê, ku tê de tenha perestgeha yezîdî li Qefqasiyê heye, hat vekirin.

Di mêmoryalê de 3 peykerên serokên civatên ermenî û kurdên yezîdî, ku bi hevre li dijî imperatoriya osmanî, ji 1915 heta 1918 (nijadkujiya ermenî), şerr kiri bû, jî hene.

Bi hezaran Kurdên yezîdî, ku ji Ermenistan û Gurcistanê hatin, û berpirsiyarên ramyariyî (siyasî) yên ermenî û serokên olî yên yezîdî û fille, beşdarî vê vekirinê bun.

Dua ji bo Yezîdîyên ku nuh bûn qurbanên Dewleta Islamî li Iraqê û ji bo bîranîna Yezîdî û Ermeniyên ku li bin imperatoriya osmanî hati bûn pelixandin hatin kirin.
*(rudaw.net, 04.10.2014)*

**ALMANYA**
Pirtûkeke nivîskara kurd Xanna Omarxalî, bi navê "Religious Minorities in Kurdistan; Beyond the Mainstream" (Hindikayiyên Olî li Kurdistanê; Ji Herikîna Avê Dûrtir) ji aliyê weşanxaneya HarrassowitzVerlag, li Wiesbadenê, di 2014 de hat weşandin. Ew berhevokeke (anthologie) 413 rûpelî ye û tê de gotarên 17 lêgeran li ser hindikayiyên olî li Kurdistanê hene : Yezîdî, Elewî, Cihû û Fille.
*(rizgari.org, 02.10.2014)*

"Mala Êzdayî" li Kalkarê vebû, ji bo hînkirina ziman û dîroka Kurdî û dayîna agahdariyan li ser Kurdistanê ji zarokên yezîdî re.

Di merasîma vekirinê de, sirûda neteweyî ya kurdî "Ey Reqîb" hat stiran û alên kurdî û almanî hatin bilind kirin. Jimareke merivên olî yên yezîdî, misilman û fille, kesahî, hunermend û ramyar (kesên siyasî) û hevalên kurd û alman beşdarî wê bûn.
*(rudaw.net, 27.10.2014)*

**AMERÎKA**
Albuma pyanîsta jin, Tara Kemanger, ji Kurdistana Îranê, ya bi navê "Rojhilatî Xem" (Xemgîniya Kurdistana Îranê), yek ji 20 albumên ku herî bêtir li Amerîka tên firotin e. Û ew weka "albuma hefteyê" ji aliyê Radyoya New Yorkê hat bijartin.

Tara Kemanger li New Yorkê bûye û di 3 saliya xwe de dest bi hînbûna piano kiri bû. Ew keça neştergerê (doktorê ku emeliyatan dike) navdar Artikas Kemanger, ji bajarê Sinê, li Kurdistana Îranê, û xwendekara muzîkvanê kurd ên navdar Hasan Kamkar e.
*(rudaw.net, 03.10.2014)*

Fîlmçêkera jin Pûran Deraxşande, ji Kurdistana Îranê, 4 Xelatên mezzin li Fêstivala Filmê Îranî li San Francisco, ji bo fîlma xwe "Hush, Girls Don't Scream" (Hişş, Keç Qîr Nakin), stendin. Fîlm li Îranê hatiye çêkirin û li ser "pédophilie" (pêwendiyên cinsî bi zarokan re), ku li vî welatî babeteke "taboo" ye, ye.
*(rudaw.net, 23.10.2014)*

**SWÊD**
***Di 04 Çirî 2014 de***, Weqfa Çanda Kurdî li Stokholmê konfêransek li ser zimanê kurdî pêk anî. Konfêransker Prof. Dr. Kadri Yıldırım, birêvebirê Enstituya Zimanên Zindî, ya Zanîngeha Artuklu li Mêrdînê, li Kurdistana Tirkiyê, bû. Wî bangî avakirina hemagengiyekê (coordination) di navbera rêxistinên çandî yên kurdî de kir. Gelek ronakbîr û nivîskar beşdarî konfêransê bûn.
*(rudaw.net, 04.10.2014)*

**LUBNAN**
4 fîlmçêkerên îranî, ku ji wan 3 Kurd, ji şervanên Kobanî re xelatên ku wan nuh li Fêstivala Navneteweyî ya Fîlmê ya Beyrûtê stendin pêşkêş kirin.

Salim Salavatî, Kurd, Xelata Baştirîn Fîlm li Rojhilata Navîn, ji bo fîlma xwe "The Last Winter" (Zivistana Dawîn) stend. Berê jî, wî Xelatên cihê li Fêstivalên Navneteweyî li Hewlêr, Duhok, Bexdad û Erivanê (Ermenistan) stendi bûn. Bi tevayî, 4 xelat.

Kurdekî 2mîn, Tewfîq Amanî, Xelata Zîvîn li Fêstivala Fîlma Kurt a Rojhilata Navîn, ji bo fîlma xwe "Ants Apartment" (Apartmana Mîro) stend.

Kurdê 3mîn Adnan Zandî, Xelata Bronz a Filma Kurt a Rojhilata Navîn, ji bo fîlma xwe "Butterflies" (Pinpinîk), stend.

Fîlmçêkerê îranî (ne kurd), Ali Sagari, Xelata Zêrîn ji bo Baştirîn Fîlma Kurt li Rojhilata Navîn stend.
*(rudaw.net, 13.10.2014)*

***Stranbêjekî lubnanî yê ereb li ser pêşmergeyan distirê***
Stranbêjê lubnanî yê ereb Heysem Seîd klîpek li ser Pêşmerge û Kurdistanê derxist. Wî daxuyand ku ew ji çend salan de li Kurdistana Iraqê dijî û ku pêwendiyên wî yên xurt bi xelk re hene. Û wî got jî ku amanca wî nîşandana piştgiriya xwe ji pêşmergeyên qehreman re li Kurdistanê ye. Klîp ji aliyê "Kurd Muzîk Production" hat çêkirin.
*(rudaw.net, 18.10.2014)*

**BRÎTANYA MEZZIN**
***Di 19 Çirî 2014 de***, "Compassion for Kurdistan", rêxistineke xeyrî ya Kurdên revendê (diaspora), li Notting Hillê şevek bi navê "Tales of Genocide" (Çîrokên Nijadkujiyê) pêk anî.

Şev bi semînerekê li ser bandorên (te'sîr) psîkolojîk li ser qurban, qatil û guwahîn (şahid) nijadkujiyê dest pê kir. Û pêşangehek, fîlmeke belgeyî … jî hebûn.
*(rudaw.net, 20.10.2014)*

**KURDISTANA IRAQÊ**
Xwendekarên kurd ên zanîngeha Duhokê li kampên penaberan digerrin, bi zarokan re dilîzin û xelatan didin wan. Wan navê xwe kiriye "Koma Mirovahiyê".
*(rudaw.net, 21.10.2014)*

**TIRKIYE**
Koma muzîk û stranan a navdar "Kardeş Türküler" (Stranên Xuşk), ku di 1993 de li Istanbulê, ji aliyê komeke xwendekarên kurd, tirk, ermenî û azerî hati bû damezrandin, û ku bi nêzîkî 10 zimanan distirê, klîpek bi navê "Rojava" (Kurdistana Sûriyê) derxist.
*(rudaw.net, 22.10.2014)*

**KOREYA BAŞÛR**
Werzişvanê (sportîf) kêmendam (seqet) ê kurd, Siyamend Rehman, ji Kurdistana Îranê, bi hilgirtina 292 kg Nîşana Zêrîn stend. Wî daxuyand ku ew xelata xwe pêşkêşî Kobanî dike.
*(rudaw.net, 26.10.2014)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 2.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl tê nivîsîn û ji aliyê Pieter Gerits bo hollandî û Şevîn Gülfer Sağınç bo ingilîzî tê wergerandin. Montaja wê ji aliyê Pieter Gerits tê kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî. Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*




